

"مۆسیقا لە شیعردا دەتەقێنمەوە" 9

# فەرهاد پیربال دەبێتە گۆرانیبێژ



## Rojîn: Ez şervana zimanê diya xwe me

9


Hejmar / Nr. 139
22 Adar / März 2012

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK


# NEWROZ

## ŞAHIYA SERHILDANÊ

3

Wêne: DIHA

Wêneyê çepê: Hevserokê BDPê Selahattin Demirtaş li Newroza Amedê; wêneyê rastê: pevçûnên li Êlihê



Sefereke bê pere bo Kurdistanê

Kupon 139

5 rojnameyan bikire û bilêtekê qezenc bike

Nav û navnîşana we:.....

Telefona we:.....



5 kuponên ji hejmarên cûda yên Rûdawê bibire û ji vê navnîşanê re bişîne:

Rûdaw Media GmbH
- Tîrûpişk -
Gutenbergstr 63 a
50823 Köln / Almanya

Nav, navnîşan û telefona xwe ji bîr nekin

Bi sponsoriya City Tower (Hewlêr)








www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

# Rêxistinên ciwanan li ser ala Kurdistanê li hev nekirin

## Nûnerê rêxistineke nêzîkî PKKê: *Em nikarin biryarê bo gelê Kurdistanê bidin û alê jê re diyar bikin*



Konferans bi diyarkirina 21 xalan bi encam bû

Wêne: Rûdaw

**Barzan Mihemed** Hewlêr

Di roja dawî ya Duyemîn Konferansa Neteweyî ya ciwanên Kurdistanê de, ku di navbera 15 û 17ê Adarê li bajarê Hewlêrê hat sazkirin, rêxistinên ciwanan yên nêzîkî PKKê bi rêxistinên din yên beşdarî konferansê re li ser ala Kurdistanê ne hevdeng bûn û bi demkî konferans boykot kirin.

Duyemîn konferansa neteweyî ya ciwanên her çar parçên Kurdistanê li jêr navê "Bo hevgirtina neteweyî ya ciwanên Kurd" li Hewlêrê hat girêdan û sê rojan berdewam kir. Konferans bi pêşkeşkirina encamnameya ku ji 21 xalan pêk hat bi dawî hat, lê rêxistinên di konferansê de beşdar li ser xala 18ê ne hevdeng bûn. Naveroka xala 18ê li ser ala Kurdistanê ye: "Ala Kurdistanê ala neteweyî ya Kurdan e û pêwist e hemû aliyek rêz lê bigire û di ser ala partiyan re bê girtin."

Di dema xwendina wê xalê de, pirraniya endamên rêxistinên beşdar di konferansê de rabûn ser piyan û ji ala Kurdistanê re li çepikan dan. Lê 80 endamên li ser 15 rêxistinên ku nûnerên PKK, PJAK, PYD û PÇDKê bûn, bi vê xalê razî nebûn û ji cîhên xwe ranebûn. Kordînatorê Komeleya Ciwanên Kurdistanê, ku rêxistineke ciwanan ya girêdayî PKKê ye, Şîmal Guneş got: "Em dikarin li ser karên ciwanên her çar parçên Kurdistanê biryarê bidin, lê em nikarin biryarê bo gelê Kurdistanê bidin, ciwanekî 23 salî yê Kurdistanê nikare biryarekê li ser xelkê her çar parçên Kurdistanê ferz bike û ala Kurdistanê diyar bike."

Şîmal, ku di konferansê de gotarek pêşkeş kir, pêşniyar kir ku meseleya destnîşankirina ala Kurdistanê di kongreya neteweyî de biryar li ser bê girtin û bê yekalîkirin, ne ku di kongreya ciwanan de û got "Li ser vêya me kongre boykot kir." Piştî saetekê ji derketina nûnerên wan saziyan, di encamê de li ser wê yekê li hev kirin ku tevahiya xalan bo kongreya neteweyî bên pêşkeşkirin û li wir biryar li ser wan bê dayin. Piştî vê biryarê rêxistinên ku konferans boykot dikirin dîsa vegeriyan nava salona kongreyê.

**Bila di kongreya neteweyî de biryareke yekalîker bê standin**

Sekreterê Yekîtiya Lawên Demokrat yên Kurdistanê Omêd Xoşnaw jî ji Rûdawê re ragihand: "Em ala Kurdistanê diyar nakin, em dibêjin divê rêz li ala Kurdistanê bê girtin, bila di kongreya neteweyî de biryareke yekalîker bê standin û tevahiya parçên Kurdistanê rêzê lê bigirin."

Ala niha ya Kurdistanê, ku piştî damezrandina Komara Kurdistanê li Mehabadê di sala 1945ê de ji aliyê Kurdan bi awayekî giştî wek ala Kurdistanê tê dîtin, ji aliyê PKKê ve zêde nayê bilindkirin û di çalakiyên xwe de PKK û rêxistinên derdora wê alên partiya xwe û hêza xwe ya çekdarî û organên xwe yên din bilind dikin.

### Konseya Serokayetiya PKKê ala Kurdistanê 2002yê qebûl kiriye, lê …

Endamê berê yê Konseya Serokayetiya PKKê, Osman Ocalan, şaşmayîna xwe ji vê helwesta rêxistinên nêzîkî PKKê nîşan da û got ku Konseya Serokayetiya PKKê ji sala 2002ê ve ala niha ya Kurdistanê qebûl kiriye. Osman ku birayê rêberê PKKê Abdullah Ocalan e, ku niha cuda bûye û li Koye rûdine, got: "Wê çaxê desteyeke Kongreya Neteweyî ya Kurdistanê serdana me li çiyê kir, daxwaz ji PKKê kirin ku ala Kurdistanê wek ala xwe bibîne, lê wê demê serkirdayetiya PKKê bû du beş û hinekan qebûl kir û hinekan jî red kir. Dûre bi navê Konseya Serokayetiya PKKê me ew al wek ala Kurdistanê qebûl kir."

Demekê ala Kurdistanê, ku pêk tê ji rengên sor, spî û kesk û rojek zer li navê, bi awayekî diyarkirî ji aliyê hinek lîderên PKKê hat danîn, lê dûre hat rakirin. Osman Ocalan derbarê sedemên bilind nekirina ala Kurdistanê ji aliyê PKKê ve got: "Niha herdu grûpên çep û Elewî di nava PKKê de desthilatdar in û bi hev re kar dikin. Ev herdu grûp zêdetir hêza wan di nav ciwanan de heye û ji ber ku girêdana ciwanan a neteweyî qels e, ew dikarin wê alê red bikin, ku ev jî tiştekî pirr nexweş e bo gelê Kurd."

**Rûdaw**

Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



# Dadgeha almanî tezmînatê dide berpirsekî PKKê

**Koln (Rûdaw) -** Tevlî ku Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK) ji sala 1993yê ve li Almanyayê qedexeye jî, lê dadgeha îdarî ya bajarê Frankfurtê (OLG Frankfurt) biryara dayîna tezmînatê bo berpirsekî PKKê da.



Li gor daxuyaniyeke 7ê vê mehê ya dadgeha îdarî ya bajarê Frankfurtê, dadgehê biryar daye ku berpirsê herêmî yê PKKê bi navê Vakuf M. (38 salî) 11.500 Euro tezmînet werbigre. Di daxuyaniya dadgehê de tê gotin ku wî kesî ji bo PKKê rêvebiriya herêmî kiriye û di navbera salên 2004 heta 2008ê de li bajarên Nurnberg, Berlin, Mainz, Koln û Darmstadtê ji bo PKKê pere ji Kurdên wan bajaran wergirtine. Li gor daxuyaniya dadgehê, berpirsê PKKê derbarê van tometên ku ew kes pê tê sûcdarkirin, ti agahî nedane û dadgehê di 7ê vê mehê de biryara salekê cezayê zindanê lê biriye.

Lê ji ber ku Vakuf M. di doza yekemîn de bi du sal û deh mehan hatibû cezakirin û Vakuf M. 2 sal û 3 mehan di girtîgehê de maye, dadgehê biryar da ku ji bo salek û sê mehên ku ew zêde di girtîgehe de maye, tezmînatê bide wî, ew jî 25 Euro ji bo her roja di girtîgehê de. Piştî biryara 2 sal û 10 meh cezayê girtîgehê, Vakuf M. biryar îtiraz kiribû û serî li dadgeha federal dabû û dadgeha federal ji ber kêmasiyeke hiqûqî biryara dadgeha Frankfurtê betal kiribû û doz dîsa hatibû vekirin.

Ji ber ku heqê dadgehê û dozê wê ji Vakuf M. bên standin û ji tezmînata wî bên birîn, ne diyar e ka di dawiyê de Vakuf M. wê çiqas tezmînatê wergire. Hat diyar kirin ku Vakuf M. di vê navberê de hatiye berdan.


Êlih, 20.03.2012


Wêne: DIHA
Newroza Amedê, 2012

# Newroza 2012ê: Qedexe Pevçûn Serhildan

**Koln (Rûdaw) -** Rewşa awarte û atmosfera tirsandina gelê Kurd li Bakurê Kurdistanê û Tirkiyeyê ku piştî hilbijartinên Parlementoya Tirkiyeyê di Hezîrana 2011ê de dest pe kir, di Newroza 2012ê de jî domand û giha asteke nû ya tûndûtûjiyê. Li gellek bajarên Bakurê Kurdistanê rayedarên dewleta tirk hewl dan ku li pêşiya pîrozbahiyên Newrozê, ku pirranî ji aliyê BDPê ve hatin organîzekirin, astengiyan derxîne û ev yek bû sedema gellek pevçûn û aloziyan. Di encama pevçûnan de herî kêm berpirsekî BDPê hat kuştin, bi dehan kes birîndar bûn û bi sedan kes jî hatin girtin.

Aloziya Newroza 2012ê bi wê yekê destpêkir ku waliyê Amedê xwest astengiyan li pêşiya pîrozbahiya Newrozê li Amedê derxîne û daxuyand ku nabe Newroz weke ku BDPê organîze kiriye, roja yekşemê, di 18ê Adarê de, bê pîrozkirin û divê Newroz di roja xwe de, yanî roja çarşemê, di 21ê Adarê de, bê pîrozkirin. Lê li gor BDPê ev biryara walîtiya Amedê ne ji ber roja rast ya Newrozê bû, lê armanc astengkirina pîrozkirina Newrozê ji aliyê BDPê ve bû û BDPê biryar da Newrozê weke ku hatiye plankirî pîroz bike, li dijî biryara walîtiyê jî. Tevlî ku BDPê bi vê helwesta xwe li Amedê biserket, ji ber ku bi sedhezaran Kurd guh nedan daxuyaniya walîtiyê û li gor banga BDPê daketin kolanan û piştî hewldanên destpêkê yên astengkirinê, polîsên Amedê mecbûr man ku xwe paşde vekişînin û di encamê de li gor BDPê zêdeyî yek milyon kes li qada Newrozê kom bûn, lê li gellek bajarên din gel û hêzên ewlekariyê yên tirk hatin hemberî hev û kolanên bajarên Bakurê Kurdistanê veguherîn qadên pevçûnan û dîmenên wekî serhildanên salên 90 zindî bûn.

Hewla astengkirina Newrozê ji aliyê rayedarên dewletê ne tenê li Amedê hat dayîn, lê li gellek bajarên din jî pîrozbahiyên Newrozê yên ji aliyê BDPê organîzekirî hatin astengkirin, anjî qedexekirin, di serî de li Stenbolê. Lê BDPê guh neda qedexeyan û bang li gel kir ku Newroza xwe pîroz bikin. Bi vî awayî gel guh neda qedexeyan û polîsên tirk jî li gellek bajaran mudaxeleyî girseyên gel kirin û di encamê de li gellek bajaran pevçûn derketin û bi dehan kes birîndar bûn û bi sedan jî hatin binçavkirin. Bûyerên herî mezin li Amedê, Stenbolê, Êlihê û Cizîrê rû dan. Yek ji bûyerên tradajîk yên pîrozkirina Newrozê li Stenbolê rû da û di encama êrişeke polîsan de rêveberê BDPê yê navçeya Arnavutkoyê Hacî Zengîn (57) hat kuştin.

Bûyerek din ku mohra xwe li pîrozbahiyên li Bakurê Kurdistanê da, êrişa polîsan a ser girseya gel û otobûsa BDPyiyan li Êlihê bû ku tê de hevserokê KCDê Ahmet Turk û siyasetmedara kurd Feleknas Uca, ku ji Almanyayê tevlî pîrozbahiyan bû, birîndar bûn. Balkêş e ku pirraniya çapemeniya tirk cîh nedan pîrozbahiyên Newrozê û eger behs jî kirin, bêtir pîrozbahî weke provokasyonên PKKê û "şerê hêzên ewlekariyê û terorîstan" nîşan dan.

Ji bilî pîrozbahiyên li Bakurê Kurdistanê, li gellek bajarên Başûr û Rojhilatê Kurdistanê jî Newroz hat pîrozkirin. Li Rojavayê Kurdistanê jî Newroza 2012ê di rewşeke taybet de û bi rihê serhildanê li hemû bajar û bajarokan hat pîrozkirin. Gelê ku tevlî pîrozbahiya bû, hem Newroza xwe pîroz kirin û hem jî daxwaza rûxandina rejîma Esad kirin.

## Yekem car pîrozbahiya Newrozê li Parlementoya Ewropayê pêk hat

Li aliyê din îsal Newroz li bi dehan bajarên Ewropayê hat pîrozbikin û pirozbahî wê heta dawiya mehê jî bidomin. Hêjayî behskirinê ye ku îsal Newroz li çendîn cihên fermî jî hat pîrozbikin, çi ji aliyê şaredariyên bajarên Ewropayê ve, çi jî li salonên parlemenên ewropî. Yek ji giringtirîn şahiya pîrozkirinê îsal li Brukselê pêk hat ku Parlementoya Ewropayê biryar standiye ku edî her sal bi awayekî fermî li salona parlementoyê Newrozê pîroz bike.


Newroza Amedê, 2012


Wêne: DIHA
Ahmet Turk piştî êrişa polîsan




## Bîranîna şehîdên Helepçeyê li Munchenê

**Munchen (Rûdaw) –** Komeleyên Kurdên li bajarê Munchenê di roja 16ê Adarê de salvegera bombebarana Helepçeyê ji aliyê rejîma Saddam bi bîr anîn. Komela Komkar û hevalbendên Partiya Demoqrat ya Kurdistan (PDK) li Bergmannstrassê û Kordinasiyona Komelen Kurd li Munchenê (Kordinasiyon) jî di salona Ein-Welt-Haus de şehîdên Helepçeyê bi bîr anîn.

Di herdu çalakiyan de nezîkî 250 kes beşdar bûn. Kurdan di civînên bîranînan de mûm pêxistin, li ser komkujiyên Helepçe û ya gundê Robozkê axaftin hatin kirin û rejîma Baasê û ya Tirkiyeyê şermezar kirin. Di Ein-Welt-Haus de şaîr û nivîskarê Kurd Sebir Sindi helbestên li ser Helepçeyê peşkeşî beşdarvanan kir.

Di Komela Komkarê de jî Kurdan filmekî li ser komkujiya Helepçeyê temaşê kirin.



## Resepsiyona Newrozê li şaredariya Munchenê

**Munchen (Rûdaw) –** Şaredariya bajarê Munchenê bo cejna Newrozê di salona xwe ya biçûk (kleiner Sitzungsall) de roja 14ê Adarê resepsiyonek li dar xist. Di resopsiyonê de berpirsiyarên komeleyên Kurdan û yên biyaniyên din û endamên Meclisa Şaredariyê (Die Linke, Die Grünen, SPD û CSU) hatibûn dawetkirin. Keşeyê dêra ortodoks ya Yewnanî jî di resepsiyonê de beşdar bû. Resepsiyon ji aliyê şaredarê bajêr yê 3. birêz Hep Monatzeder (Partiya Kesk) ve hat vekirin. Monatzeder di axaftina xwe de got: "Ez Newroza gelê Kurd pîroz dikim. Newroz cejna aştiyê, biharê û rizgariyê yê. Hîn pirraniya gelê Kurd bindest e, ez bo wan azadiyê dixwazim û arîkariya xwe nîşan dikim."

Rûdaw | Hejmar 139


Wêne: Rûdaw

## PYD dixwaze hêza xwe ya leşkerî xurtir bike

# Rexnegirên wê: Em ji vê xebatê bitirs in

**Sîrwan H. Berko**

Salek piştî destpêkirina şoreşa li Sûriyê roj bi roj hejmara goriyan zêdetir dibe. Çendîn hejmara goriyên Kurd heta niha ne diyar e, lê gellek caran ciwanên Kurd ji erkên xwe yên di artêşa Sûriyê de di tabûtan de vegeriyane malên xwe. Li Sûriyê ciwanên ku di salên 1990 heta 1993ê de çêbûne, mecbûr in tevlî artêşa Sûriyê bibin. Ji ber rewşa li Sûriyê û kuştina gellek leşkerên sûrî, di nav wan de leşkerên Kurd, hejmara ciwanên ku ji leşkeriyê direvin an jî naxwazin tevlî artêşa sûrî bibin, her ku diçe zêdetir dibe. Di mehên dawî de gellek ji wan reviyane derveyî Sûriyê, bi taybetî Herêma Başûrê Kurdistanê.

Beramber van bûyeran partiyên kurdî li Sûriyê heta niha ti helwest nîşan nedane. Partiya Yekîtiya Demokrat (PYD) a nêzîkî Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK) yekemîn partî ye ku dixwaze sûdê ji hêza leşker û ciwanên Kurd bigire. Di rojên dawî de PYDê dest pê kiriye ku bang li ciwanên Kurd bike ku tevlî artêşa Sûriyê nebin û li şûna wê tevlî "komîteyên parastinê yên gel" bibin. Di rêya daxuyaniyên rêxistina ciwanan a PYDê re, ku navê "Rêxistina Ciwanên Rojavayê Kurdistanê" lê tê kirin, PYD ji ciwanan dixwaze ku tevlî "komîteyên parastina gel li herêmên xwe bibin, ku ji bo parastina gel li Rojavayê Kurdistanê hatine damezrandin".

**Ku PYD hêzeke xwe ya çekdarî çêbike, ev tirsa şerekî navxweyî di nav Kurdan de bi xwe re tîne.**

Ji ber ku di nav partiyên kurdî de tenê PYD xwedî hêzeke çekdarî ye, rexnegirên PYDê van bangan wek hewildanên ji bo xurtkirina hêza xwe ya çekdarî li herêmên kurdî li Sûriyê dibînin. Sekretêrê Partiya Yekîtî ya Kurdî li Sûriyê, Îsmaîl Hemê, ji Rûdaw re diyar kir ku pêwîstiya Kurdan bi hêzeke çekdarî heye, "lê em ne ligel wê yekê ne ku her partiyek bibe xwedî hêzeke çekdarî ya taybetî. Ku PYD hêzeke xwe ya çekdarî çêbike, ev tirsa şerekî navxweyî di nav Kurdan de bi xwe re tîne."

Partiya Yekîtî û partiyên din ên Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê, ku ji bilî PYDê û Şepêla Pêşerojê ya Kurdî li Sûriyê hemû partiyên kurdî endamên wê ne, heta niha li ser pirsa çekdarkirina Kurdên li Sûriyê ne xwedî proje û helwesteke eşkere ne. Sekreterê Partiya Demokrat a Kurdî li Sûriyê, Dr. Ebdilhekîm Beşar, li dij e ku di şoreşa Sûriyê de çek bên bi kar anîn. Li gor wî çekdarkirina Kurdan wê kêşeyan dirûst bike. Ew dibêje: "Em ne pê re ne ku ciwanên Kurd tevlî hêzên çekdarî yên PYDê bibin. Em jî naxwazin ku ciwanên me di artêşa Sûriyê de bimînin, lê gerek ew xwe bidin alî û ku pêwîst bû, ji Sûriyê derkevin."

Pirraniya partiyê kurdî piştgiriya banga PYDê ji bo dûrxistina ciwanên Kurd ji artêşa Sûriyê dikin. Lê Salih Gedo, endamekî bilind ê Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê, li dij e ku ew di nav hêza çekdarî ya PYDê de cîh bigirin. Wî ji Rûdawê re got: "Em ne bi van çîrokan re ne." Sekreterê Partiya Yekîtî ya Demokrat a Kurdî li Sûriyê, Mihyedîn Şêx Alî, li ser vê xalê ne xwedî bîrûboçûn e û ji Rûdawê re got: "Em hîn li ser vê meseleyê nesekinîne."

Berpirsê PYDê Adar Xelîl vê helwesta partiyên kurdî fêm nake. Ew dibêje ku "dem dema şoreşê ye û divê em hesab bikin ku rejîm êrîşî me bike". Xelîl pêwîstiya hêzeke kurdî ya çekdarî dibîne û ji Rûdawê re got ku çekdarên PYDê "amade ne ciwanên Kurd perwerde bikin". Wî herweha got ku ew dixwazin ciwanan li Kurdistana Sûriyê perwerde bikin. Li ser pirsa bê ma heta niha çend ciwanan banga PYDê pejirandine û bê ma ewê çekên ji bo wan ji kû derê peyda bikin, Aldar Xelîl got: "Ez nikarim bersivê bidim."

Rexnegirên PYDê wê bi hevkariya bi rejîma Sûriyê re gunehkar dikin. Rêxistina Ewropa ya Şepêla Pêşerojê ya Kurdî li Sûriyê hefteya borî diyar kir ku PYD "rexnevanan tehdît dike, ditirsîne, direvîne, îşkence dike û dikuje. Hevalên PYDê dixwazin karên dewletê bixin destên xwe."

Çalakvanê kurd Ciwan Yûsiv tevlî van rexneyan dibe. Peyvdarê rêxistina "Sewa", ku yek ji mezintirîn û çalaktirîn rêxistinên serbixwe yên ciwanên Kurd e, dibêje ku şoreşa li Sûriyê "ne şoreşeke hizbî ye, ew şoreşa tevaya Sûriyê ye". Yûsiv piştgirê ramana sazkirina hêzeke çekdarî ya kurdî ye, lê bi şertê ku ew hêz ne ya partiyekê be. Ciwan Yûsiv, ku ji ber tirsa girtin û kuştinê ev demek e li Tirkiyeyê dijî, dibêje ku "gunehên ku PYDê di destpêka şoreşê de kirine, nayên derbas kirin. Wan gellek xort tehdîd kirine, revandine û hin Kurd jî kuştine." Yûsiv rexneyê li PYDê û partiyên kurdî yên din dike û dibêje ku wan heta niha "xizmet ji şoreşê re nekirine". Lê dîsa jî peyvdarê "Sewa" bang li partiyan dike ku ligel rêxistinên ciwanan hêzeke çekdarî ya hevbeş saz bikin. "Lê em ji çekdarkirina yekalî ji aliyê PYD ve gellekî bitirs in".

Lê PYD xebata xwe ji bo pêkanîna projeya xwe ya ji bo Rojavayê Kurdistanê didomîne. Banga wê ya niha ji bo ciwanên Kurd me vedigerînin salên dema PKK li Sûriyê ku bi awayekî eşkere xebata xwe dikir. Hingî Hafiz el-Esed, bavê serokê niha yê Sûriyê Beşar el-Esed, ciwanên Kurd yên ku tevlî hêzên gerîlla yên PKKê dibûn, ji tevlîbûna artêşa Sûriyê rizgar dikirin.

## Çima Encûmena Kurdî û Encûmena Sûrî li hev nakin?

# Rûdaw deqên herdu aliyan ji bo çareseriya pirsa kurdî li Sûriyê diweşîne

Hewildanên Encûmena Niştimanî ya Sûrî ji bo lihevhatinekê ligel Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê bi ser neketin. Heftiya borî şandeke ji mezintirîn koma opozîsyonê ya surî li Hewlêrê du rojan ligel şanda mezintirîn koma kurdî li Sûriyê li ser peymanekê guftûgo kir, lê herdu alî negihan çareseriyeke hevbeş. Ev duyemîn car e ku hevdîtinên herdu aliyan li paytexta Herêma Kurdistanê pêk tên.

Çendîn herdu alî li ser xalên giştî li ser dewleta Sûriyê ya nû xwedî nerîneke hevbeş in. Lê dema mesele tê ser çareserkirina pirsa kurdî li Sûriyê, cudabûna di ramanan de eşkere dibe. Ev sedema bingehîn e ku koma pirraniya partiyên kurdî li Sûriyê heta niha tevlîbûna di Encûmena Sûrî de nepejirandiye.




Rûdaw deqên herdu aliyan li ser pirsa kurdî bi dest xistin. Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê doza "pejirandina gelê Kurd û mafên wî yên neteweyî yên rewa di destûrê de, li gor peyman û pîvanên navneteweyî di hundirê dewleteke ne navendî ya yekgirtî de, û naskirina doza kurdî wek pêkhateyek bingehîn ji doza niştimanî û demokratî ya giştî di dewletê de" dike.

Encûmena Niştimanî ya Sûrî ji aliyê xwe ve vê çareseriyê pêşkêşî Kurdan dike: "Encûmena Niştimanî ya Sûrî pabend e bi pejirandina nasnameya neteweyî ya gelê Kurd ji aliyê destûrê ve, û doza kurdî wek beşek bingehîn ji doza niştimanî ya giştî dibîne, û mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçeweya yekîtiya xak û gelê sûrî de dipejirîne." Di xaleke din de Encûmena Sûrî herweha ji bo dewleta sûrî ya nû sîstema "ne navendî ya îdarî" dipejirîne. Di xaleke din de Encûmena Sûrî herweha dibêje ku "Sûriya nû wê ji bo welatî û tevahiya pêkhatiyên xwe mafên di peymanên navneteweyî li ser mafên mirov û azadiyên bingehîn de misoger bike û herweha wekheviya di maf û erkan de bêyî cudakirin di netewe yan ol û regezê de misoger bike."

Encûmena Niştimanî ya Kurdî ji vê çareseriya Encûmena Sûrî ne razî ye. Endamê şanda Encûmena Kurdî Dr. Sededîn Mele ji Rûdawê re got: "Ereb ji meseleya cografî bitirs in. Ew me mîna Fileh û hindikahiyên din li Sûriyê dibînin. Lê em dibêjin ku Kurd li ser xaka xwe dijîn û li Sûriyê ne mêvan in. Divê ev yek ji herkesî re zelal be." Endamekî din ji şanda kurdî nexwest navê wî eşkere bibe, ji Rûdawê re got: "Dibe ku di asta qanûnî de herdu çareserî wekhev bin. Ji bo zelalkirina vê xalê emê bi pisporên qanûnê re bişêwirin."

Ji aliyê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê û herweha welatên Yekîtiya Ewropayê li ser Encûmena Niştimanî ya Sûrî zext tê kirin ku mafên "hindikahiyên" li Sûriyê misoger bikin. Di heman demê de li ser Kurdan zext tê kirin ku tevlî Encûmena Sûrî bibin û bibin alîkar di yekkirina peyva opozîsyona sûrî de.

**Dema ku rêjîm birûxe, wê miletê sûrî û yê Kurd wan kesan ji bîr nekin, ku di şoreşê de hevsarê xwe teslîmî rejîmê kiribûn. Hîn ne dereng e ku ew li xwe vegerin û vê meseleyê derbas bikin.**



Wêne: Rûdaw

### Dr. Ebdilbasit Seyda, endamê Kurd di Komîteya Cîbicîkirinê ya Encûmena Niştimanî ya Sûrî de:

# Pirsa kurdî ne li Hewlêr û Qendîlê tê çareserkirin

Cara duyemîn e ku wî di nav şandeke Encûmena Niştimanî ya Sûrî de serdana Hewlêrê kir. Dr. Ebdilbasit Seyda û hevkarên xwe li paytexta Herêma Kurdistanê ligel şanda Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê kom bû. Encûmena Sûrî li jêr serokatiya Dr. Burhan Xelyûn dixwaze mezintirîn koma opozisyonê ya kurdî bike endama xwe. Heta niha herdu aliyan li hev nekiriye. Di hevpeyvîneke bi Rûdawê re Dr. Ebdilbasit Seyda, ku li Zanîngeha Şamê di felsefeyê de nameya dektorayê stendiye û di salên notî de koçberî Swêdê bûye, li ser Artêşa Azad a Sûrî û şerê çekdarî û herweha rola Herêma Kurdistanê di xebata ji bo Sûriya piştî Beşar el-Esed de diaxive.

**Rûdaw: Di dema dawî de gellek ji endamên bilind ên Encûmena Niştimanî ya Sûrî jê derketin û we rexne dikin ku hûn li dijî biçekkirina 'Artêşa Azad' in.**

**Dr. Ebdilbasit Seyda:** Artêşa Azad bûye wek "qemîs Usman". Her yek tê û dibêje ku dixwaze alîkariya Artêşa Azad bike. Ev artêş ne artêşeke nîzamî ya li ser xwe ye. Gellek kes hene ji artêşê cuda bûne û navê Artêşa Azad li xwe dikin. Ji pêşî de daxwaza me ew e ku ev kes bên ser hev û bibin hêzek. Dema tu niha çekan bidî wan, bêyî ku tu wan bikî yek, ewê sibe piştî ketina rejîmê bibin mîlîşiyat û wê kêşeyên gellek mezin çêbibin. Ne veşartî ye ku îro tirs li cem xelkê çêdibe û bi taybetî li cem hindikahiyan. Me bi Artêşa Azad re peymanek îmze kiriye û ew Encûmena Niştimanî ya Sûrî ji xwe re sîwana siyasî dibînin.

**Hûn dixwazin Artêşa Azad ji bo şerê li dijî rejîmê bi kar bînin?**

Karê Artêşa Azad tenê xweparastin û parastina kesên sîvîl e. Heta niha em negihane wê baweriyê ku em berê şoreşê bidin ber bi şerekî çekdarî ve. Em piştgiriya wê yekê dikin ku Artêşa Azad xwe biparêze. Em di encûmenê de gihane baweriyekê ku pêwîst e ew ji bo xweparastinê çekên baştir bi dest bixin. Ev berpirsyariyeke dîrokî ye li ser milên me û divê em baş hesabên xwe bikin.

**Serokwezîrê brîtanî David Cameron hefteya borî got ku divê guhertina li Sûriyê ji jor ve bê kirin, ne ji jêrê ve. Hûn bawer dikin ku Beşar el-Esed dikare bêyî şoreşeke ji jêrê ve bê guhertin?**

Li Misirê serok hat rahiştin û guhertinek bi vî awayî çêbû. Lê niha ciwanên wan ne razî ne û hest dikin ku ti guhertin pêk nehatine. Dibe ku ji bo welatên Rojava hesantir be ku li Sûriyê guhertin ji jor ve, di rêya inqîlabekê re pêk bê, daku dewlet ji hev nekeve. Lê em bawer nakin ku ev yek gengaz e. Piştî ve şoreşê û qurbaniyên ku me dane, emê ti carî guhertineke ji jor ve qebûl nekin.

**Hûn bawer dikin ku ji bo guhertinê pêwîstî bi êrîşeke leşkerî li dijî Sûriyê heye?**

Berê em ne ligel bûn, ji ber ku me hêvî dikir ku Komkara Welatên Erebî wê alîkariya me bike. Me ji bo alîkariyê berê xwe dida Neteweyên Yekbûyî. Me tim digot eger milet bêhêvî bibe, ewê bi xwe bixwaze xwe biparêze. Eger rojane sed û du sed kes tên kuştin û jin û zarok bi kêran tên kuştin, hingî divê çareyek peyda bibe. Em perçeyek ji cîhanê ne û ji mafê me ye em daxwaza parastinê bikin. Em ji wan re dibêjin: Hûn bi çi şêweyî dikin, bikin. Lê li cem me hemû ihtîmal li ser maseyê ne.

**Tiştek bi navê Peymana Hewlêrê tune ye.**

**Emê ti carî guhertineke ji jor ve qebûl nekin.**

**Ez hêvî dikim ku PYD li xwe vegere û xelkê netirsîne.**

**Guhertinên li Sûriyê wê şopên xwe li Herêma Kurdistanê jî çêbikin.**

**Pêwîstiya Kurdan bi hêzeke çekdarî heye, daku bikaribin xwe di Sûriya piştî rûxandina rêjîma Esed de biparêzin?**

Ez wê tirsê nabînim ku Ereb û Kurd bên hember hevûdu. Nifşê sûrî yê nû ku em hêviyan li ser girêdidin, gellekî hatiye guhertin. Dema li Sûriyê tevlîheviyek peyda bibe, bêguman wê hesabê Kurdan di vê meseleyê de hebe. Lê ez baş nabînim ku ji niha ve xelk bên tirsandin. Kesên ku vî karî dikin, dixwazin xelkê ji şoreşê bitirsînin.

**Di nav Kurdan de, bi taybetî di nav PYDê de, tirsek heye ku Tirkiye derbasî Rojavayê Kurdistanê. Gelo ev gengaz e?**

Ez bawer nakim ku ew hêza çekdarî ya xurt li herêmên kurdî hebe ku bihêle Tirkiye derbas bibe. Ez hêvî dikim ku PYD li xwe vegere û xelkê netirsîne. Ev karê ku îro dibe, ne ji berjewendiya wan e, ne ji ya Kurdan e, ne jî ji ya Sûriyê ye. Dema ku rêjîm birûxe, wê miletê sûrî û yê Kurd wan kesan ji bîr nekin, ku di şoreşê de hevsarê xwe teslîmî rejîmê kiribûn. Hîn ne dereng e ku ew li xwe vegerin û vê meseleyê derbas bikin.



**Encûmena Niştimanî ya Kurdî we rexne dike û dibêje ku we lihevhatina li Hewlêrê, ku navê Peymana Hewlêrê lê hatiye kirin, binpê kir.**

**Çima helwesta we hat guhertin?**

Em dixwazin ku Encûmena Kurdî tevlî Encûmena Sûrî bibe û ji mêj ve em li ser vê yekê dixebitin. Lê ez dixwazim xalekê ronî bikim: Tiştek bi navê Peymana Hewlêrê tune ye. Encûmena Kurdî hingî tenê pêşniyarek pêşkêşî me kir û hingî jî me ji wan re got ku emê bi hevalên xwe re li ser biaxivin. Guftûgo berdewam in û em hêvîdar in ku ewê di zûtirîn dem de derbasî Encûmena Sûrî bibin.

**Hûn bawer dikin ku pirsa kurdî li Sûriyê li Hewlêr û Qendîlê tê çareserkirin?**

Na, ez bawer nakim. Jixwe ji bo min cudabûna di navbera Hewlêr û Qendîl de gellekî mezin e. Û ne rast e em herdu aliyan bidin ber hev. Guhertinên ku wê li herêmê çêbibin, guhertinên mezin in. Bi rewşa li Sûriyê tevaya herêmê pê eleqedar dibe û Herêma Kurdistanê jî di nav de. Ji berjewendiya Kurdên li Sûriyê ye ku lêvegerek kurdî hebe. Em hest nakin ku Herêma Kurdistanê dixwaze tiştekî li ser aliyekî ferz bike. Ew dixwazin alîkariyê bikin. Ew baş dizanin ku guhertinên li Sûriyê wê şopên xwe li Herêma Kurdistanê jî çêbikin, eger ew bixwazin an nexwazin.

**Di heftiyên borî de bi sedan xortên Kurd ji artêşa Sûriyê reviyane û hatine Herêma Kurdistanê. Hûn ji Herêma Kurdistanê çi hêvî dikin?**

Em baş dibînin ku Herêma Kurdistanê rê ji xortên me re vekirine. Ev rehetiyekê dide me. Lê belê em dixwazin û hêvîdar in ku ew di pêdiviyên rojane de alîkariya xortan bikin. Divê ew guh bidin xortan û wan bi tenê nehêlin.

**Hûn bawer dikin ku 2012 wê ji bo gelê li Sûriyê bibe sala azadiyê?**

Em hêvîdar in. Ji bo vê yekê nîşanên xurt hene.

*Hevpeyvîn:*
*Sîrwan Hecî Berko*

# PEyê yekem car Newroz pîroz kir

**Azad Kurdî** Bruksel

Piştî ku Newroz ji aliyê Neteweyên Yekgirtî ve bi fermî hat naskirin, vê carê Parlemantoya Ewropayê (PE) jî biryar wergirtiye ku ji sala 2012ê peyre şahiya Newrozê pîroz bike. Hemû neteweyên ku Newrozê pîroz dikin hatine vexwendin û gellek kesayetiyên Kurd û herweha komek govendê ya kurdî beşdarî şahiyê dibe. Beşdareke koma govendê ji Rûdawê re got: "Emê bi stran û govenda xwe çand û nasnameya neteweya Kurd li Parlamena Ewropayê pêşan bidin."

Şahiya Newroza 2012ê bo cara yekemîn û bi awayekî fermî roja 20ê Adarê, bi hewldanên Grûba Partiyên Keskên Ewropayê li Parlamentoya Ewropayê li bajarê Brukselê tê pîroz kirin. Partiya Keskên Belçîkayê berpirsyariya rêvebirina vê şahiyê hilgirtiye, lê vê partiyê jî Yekîtiya Civatên Îranî li Ewropa ji bo lidarxistina bernameyên şahiya Newrozê destnîşan kiriye. Kurd tenê wek mêvan beşdarî şahiya Newrozê dibin, ne wek rêvebir. Kurd, Faris, Turkmenistanî, Çerkes û Kirkîz, Afgan û gelên din ên Rojhilata Navîn ku Newrozê pîroz dikin ji bo şahiyê hatine vexwendin. Herçiqas kesayetî û saziyên Kurd li Belçîka pirr in, lê lobiya kurdî gellek lawaz e û bandora wan li ser partî û saziyên belçîkî û ewropî pirr kêm e. Lê ji xeynî beşdariya bi dehan kesayetiyên siyasî û çandî yên Kurd, komek govendê ya kurdî jî ji bo şahiyê bi fermî hatiye gazîkirin ku govendên kurdî pêşan bide.


Koma Kurdi ya Govendê parlementerên PEyê û beşdarên pîrozbahiya Newrozê coşandin

Rûdawê li bajarê Leuven ê Belçîka xwe gihand rêvebir û lîstikvanên vê koma govendê û hest û nerînên wan wergirt. Rêveberê komê Aram Yegit (28) ji bajarê Mêrdînê derbarê vexwendina wan wiha ji Rûdawê re axivî: "Ji ber ku em Kurd yek ji wan gelan in ku Newrozê pîroz dikin, Partiya Keskên Belçîkayê bi fermî ji me xwest ku tevlî şahiyê bibin, me jî qebûl kir. Em wek komek kurdî hatine gazîkirin û emê li Parlemana Ewropayê Newrozê bi kurdî pîroz bikin. Em pirr dilxweş in ku bi nav û nasnameya Kurdan diçin ser sehneyê, ev pirr giring e." Aram da xuyakirin ku ewê bidin nîşandan ku Kurd yekemîn netewe bûye ku Newroz pîroz kiriye û herdem ji ber zilm û zordariya li ser Kurdan, gelê Kurd wek serhildanekê Newroz pîroz dike.

15 ciwanên Kurd (7 keç û 8 xort) ên niştecihê bajarê Leuvan di nav koma govenda kurdî de cîh digirin. Helîme Qesrî (28) berpirsyara vê projeyê dike û organîzatora çalakiyê ye û ev 20 sal dibe ku li Belçêkayê dijî. Lê ew bi kurdiyek şîrîn ji bo Rûdawê axivî: "Ligel ku bêtirîn endamên komê li vir jidayîk bûne û pêdivî bû 6 mehan mijûl bin heta bi awayekî profesyonel hînî govendê bibin, lê di dema kêmtirî 2 mehan de hemû amade ne ji bo beşdarî şahiya Newrozê li Parlemana Ewropayê bibin." Helîme wiha dirêjî da axaftina xwe: "Koma me 2 meh dibe ava bûye, lê şansek mezin bû ku em hatin gazîkirin ji bo şahiya Newrozê li Parlemantoya Ewropayê. Armanca me ev bû ku ciwanên Kurd beşdarî çalakiyên kultûrî yên neteweyî bikin û rêjeya beşdariya ciwanan jî berfireh e û ciddî dixebitin." Li gor Helîme, berî 2 mehan bi 7 kesan destpê kirine, lê niha 23 ciwan di vê komê de beşdar in. Helîme Qesrî tekez kir: "Emê bi kincên rengîn ên kurdî, muzîk û govenda kurdî şahiya Newroza 2012ê li Parlemantoya Ewropayê pêşkêşî bikin."

## Cîgira serokê Parlementoya Ewropayê, Isabelle Durant, bo Rûdawê axivî:

# "Newroz cejnek pirrneteweyî ye û Kurd zêdeyî 2 hezar sal in pîroz dikin"

**Azad Kurdî** Bruksel

Herçiqas Sendîkaya Civatên Çandî yên Îranî li 6 welatên Ewropayê şahiya Newrozê bo cara yekemîn li Parlementoya Ewropayê rêve birin û hewil dan ku bêhtir Newrozê wek cejnek Îranî pêşan bidin, lê cîgira serokê Parlementoya Ewropayê û sê parlementerên din di panela yekemîn beşa şahiya Newrozê de li Brukselê di 20ê Adara 2012ê de bal kişandin ser dîrok û pîrozkirina Newrozê ji aliyê neteweya Kurd ve. Herwiha çar Parlementerên ewropî ji Grûba Keskên Ewropayê li parlemenê bal kişandin ser vê yekê ku Newroz tenê ne ya Îraniyan e, belkî cejnek kevinar a pirr neteweyî ye û gellek netewe Newrozê pîroz dikin. Herçiqas komeke govend û muzîka kurdî li Belçîkayê jî hatibû vexwendin û bi govend û muzîka Kurdî bala beşdaran kişandin aliyê xwe, lê pirraniya mêvanên şahiya Newrozê li Parlementoya Ewropayê Îraniyên ji 6 welatên Ewropayê bûn, ligel parlementer û kesayetiyên ewropî û çend Kurdên niştecihên Brukselê.

Derbarê vê pirsê gelo ligel ku Newroz cejna Kurdan û çend neteweyên din ên Rojhilata Navîn e, lê çima bêhtir Îranî hatibûn vexwnedin, cîgira serokê Parlementoya Ewropayê ji Partiya Keskan a Belçîkayê, Isabelle Durant, daxuyanî da Rûdawê û wiha axivî: "Em bawer in ku Newroz tenê ne ya Îraniyan e û Kurd û Afgan û çend neteweyên din li Rojhlata Navîn jî pîroz dikin. Lê ev yekemîn şahiya Newrozê bû ku li Parlementoya Ewropayê hat organîzkirin û emê şahiyên Newrozê yên bên pirralî û pirrneteweyî rêve bibin. Newroz cejna kevin a Kurdan e û bêhtirî 2 hezar sal in Kurd pîroz dikin." Isabelle Durant wiha dirêjî da axaftina xwe: "Ji xeynî Grûpa Partiyên Keskên Ewropayê, bo cara dahatû emê hewl bidin hemû grubên nav parlemenê razî bikin ku tevli şahiya Newrozê bibin ku cejna kevnar a neteweyên Rojhilata Navîn û yek ji wan Kurdan e. Emê salên bê bi awayekî fireh û tevalî organîze bikin." Isabelle Durant eşkere kir, ji ber ku komeleyên îranî li Brukselê aktîv in, vê carê wan rêvebirina şahiya Newrozê siparte komeleyên îranî. Herçiqas çend saziyên çandî ên kurdî li Brukselê hene, lê alîkariyên hevbeş di navbera sazî û civatên Kurd de li paytexta Yekîtiya Ewropayê pirr kêm tê berçav û di boneyên wiha giring de para Kurdan herî kêm tê dîtin.

### Parlementarên ewropî tevli govenda kurdî bûn

Axaftina Parlementera Ewropayê ji Partiya Keskên Fransayê, Nicole Kill – Niesen, di panela derbarê dîroka Newrozê ji aliyê Kurdan ve herî balkêş bû. Nicole Kill – Niesen nerînên xwe wiha bi Rûdawê re parve kir: "Herçiqas Kurd çend hezar sal in Newroz pîroz kirine û dikin, lê hêj li hindek welatên herêmê şahiyên Newrozê li Kurdan hatiye qedexekirin." Nicole Kill – Niesen bal kişand ser bûyerên Newrozê li Bakurê Kurdistanê û da xuyakirin: "Peywendî û agahdariyên kûr ên me ligel Diyarbekirê hene û haya me jê heye ku çawan li hemberî pîrozkirina şahiya Newrozê tundûtûjî û qedexekirin li Diyarbekir û bajarên din li Tirkiyeyê ji aliyê hikûmetê ve tê meşandin." Parlementera Ewropayê Nicole Kill – Niesen dema daxuyanî derbarê Kurdan û Newrozê didan Rûdawê, bal kişand ser giringiya Newrozê wek cejna nûbûna jiyanê di nav kultûra Kurdan de û got: "Kurd yek ji xwediyên Newrozê ne ku bi girseyî pîroz dikin." Dema Koma Govenda Ciwanên bajarê Leuvan govenda kurdî pêşkêş dikirin, Nicole Kill – Niesen jî tevlî govenda kurdî bû.


Isabelle Durant

### Jean Lambert govenda kurdî eciband

Koma Govenda Ciwanên bajarê Leuvan li Belçîkayê bi xemla kurdî bala beşdarên şahiyê bi tevahî kişand ser kultûra kurdî û pîrozkirina Newrozê ji aliyê Kurdan ve. Parlementera Ewropayê ji Partiya Keskên Brîtanyayê, Jean Lambert, jî wiha bo Rûdawê axivî: "Bi nerîna min dîmenên herî balkêş ên şahiyê govenda kurdî ya ciwanên Kurd bû."



# Polîs serdana dikanên Kurdan dikin

## Polîs: Çima hûn ji PKKê hez dikin?

Roj Ehmed Hull

Kurdên rûniştvanên bajarê Hull ê bakûrê Brîtanyayê dilgiran in ku polîs di destpêka vê hefteyê de serdana gellek dikanên Kurdan kirine û pirsîne ka endamên PKKê hatine bi zorê pere ji wan standine yan na. Polîs bi giştî çûne dikanên ser caddeya navçeya Beverly Road û Spring Bank ku gellek Kurd li wan dijîn.

Bajarê Hull ku dikeve bakûrê Brîtanyayê, mezintirîn cihê mayîna Kurdan e piştî Londonê. Xwendekarê Zanîngehê Goran Salih roja şemiya borî li ser caddeya Beverly Road li restorantekî Kurdan rûniştibû dema du polîs ketin hundir û pirs kirin, “gelo endamên PKKê hatine vir û bi zorê pere ji we standine?”

Goran piştî ku xwe weke alîgirê PKKê ji polîsan re da nasandin, polîsan lêkolîn ligel wî kirin û nav, hejmara telefon û adresa wî li cem xwe qeyd kirin. Goran got "piştî wan zanîn ku ez piştevaniya PKKê dikim, gellek ji wan re ecêb hat. Jixwe zanyariyên wan jî ser Kurdan nebûn û digotin çima hûn ji PKKê hez dikin, tevî ku hûn xelkê Îraqê ne û nabe hûn piştevaniya vê rêxistinê bikin ku li gor pîvanên Brîtanyayê weke terorîst hatiye binav kirin.” Goran herwiha got ku hemû Kurdên din ên li restorantê rûniştîbûn çûne cem polîsan û xwestin polîs nav, adres û hejmarên telefonên wan jî qeyd bikin, weke alîgirên PKKê. Ev jî bo nîşandana piştevaniyê bû bo Goran. Goran got, "Min ji polîsan re got ev nasnameya me ya siyasî ye. Em Kurd hemû piştevaniya PKKê dikin. Em li Îraqê yan Îranê, Tirkiyeyê, Sûriyê û heta eger li Rûsya û Ermenistanê bin, em weke azadîxwaz û parêzvanên xwe berê xwe didin PKKê. Loma em naveşêrin ku em alîgirên PKKê ne û em natirsin eger em wisa bên naskirin jî.” Li gor zanyariyên ketine dest Rûdawê, hin bazirganên tirk ên rûniştvanên bajarê Hull li dijî endamên PKKê agahî dane polîsan û ew bi vê yekê tawanbar kirine ku endamên PKKê bi zorê pere ji wan standine û gef li wan xwarine.




### Bazirganê tirk agahî dane polîsên brîtanî

Rûdawê peywendî bi polîsên Hull re danî, lê wan got ku haya wan jê tune û ti operasyoneke bi vî rengî ji aliyê polîsan di vî bajarî de nehatiye kirin. Lê çavkaniyekî ji hundirê şaredariya bajarê Hull ku nexwest navê wî bê belavkirin eşkere kir ku berî demekê wan ji parlementerekî brîtanî bihîstiye ku bazirganên tirk ên vî bajarî li dijî PKKê agahî dane polîsan: “Bazirganên tirk çûne cem parlementer û endamên şaredariyan û gilî kirine û xwestine vê pirsgirêkê bigihînin saziyên navxweyî. Mimkûn e ev be sedema ku polîs bo kontrolkirin û lêgerîna endamên PKKê biçin taxên Kurdan.”

### “Tirkên nasyonalîst dixwazin pirsgirêkan bo Kurdan çêkin”

Penaberê Kurd Azad Ozcan di Komela Kurdî ya bajarê Hullê de weke alîgirê PKKê tê naskirin. Ozcan got ew di 10 salên borî de li hemû welatên Ewropayê geriyaye û li gor wî ev coreyên tometbarkirinê û şikayetkirina Kurdan ji aliyê bazirganên tirk ve tiştekî berbelav e ku li hemû welatên Ewropayê pêk tên.

Azad got ku "ev Tirkên radîkal ên nasyonalîst dixwazin pirsgirêkan bo Kurdan çêkin. Tiştê ku bazirganên tirk kirine, taktîkeke azirandinê ye, daku PKKê di çavên parlementên ewropayî de weke rêxistineke diz, cerdevanî û çeteyan bidin nasandin. Herwiha ew dixwazin ku êrîşên Tirkiyeyê yên li dijî Kurdên sivîl û gundiyan li ser asta Ewropayê rewa bên dîtin.”

# Doskî dîsa bû seroka ofîsa NY li Falshopingê

**Swêd (Rûdaw)-** Jina Kurd Tazia Doskî (26) ji Nîsana sala 1996ê heta niha li Swêdê dijî û niha li bajarê Falshopîngê seroka ofîsa Netewên Yekgirtî ye. Tazia di kongreya meha Sibatê de bo cara sêyemîn weke seroka ofîsê hat hilbijartin. Tazia Doskî derbarê hilbijartina xwe de agahî dane Rûdawê û got, "Me li bajarê Falshopîngê di 20ê Sibatê de kongreya xwe ya salane saz kir. Partiya Gel ez wek namzet nîşan da û ev cara sêyemîn e ku ez wek seroka ofîsê têm hilbijartin.”

Tazia Doskî zimanên kurdî, îngilîzî, farisî û swêdî dizane. Ew derbarê fêrbûn û faydeya zimanan dibeje: "Dema ku em li Îranê bûn ez fêrî farisî bûm, lê belê me zimanê xwe paşguh nekir û ez niha bi herdu rênivîsên kurdî dizanim. Ez li dibistanê jî fêrî îngilîzî û swêdî bûm, ji bo kar û xebatên min ev herdu ziman pirr alîkariya min dikin. Beşeke serkeftina min hînbûna pirr zimanan e.”

Doskî rexneyan li têgihiştina rayagiştî ya ewropî ya derbarê Îslamê û penaberan dike û dibêje, "Xelkên ewropî, nemaze hinek swêdî, dema her bûyerek rûdide, bêyî bifikirin, dibêjin ev Îslamî ne yan biyanî ne. Divê ev şaşîtî were sererast kirin.”


Wêne: Rûdaw

Tazia Doskî ji sala 1996ê ve li Swêdê dijî

## Newroz hat futbol sekinî



*__Hewlêr (Rûdaw) -__ Berpirsê Lêjneya Hevrikiyan a Federasyona Futbolê ya Kurdistanê Dilşad Salih diyar kir ji ber pîrozbahiyên Cejna Newrozê, wê bo heyama hefteyekê hemû yariyên futbolê bidin sekinandin.*

*Li gor nûçeya AKnewsê Dilşad Salih ragihand, “Di civîna roja 18ê Adarê ya federasyona futbolê de biryar hat dayîn ku ji ber hatina Cejna Newrozê, hemû yariyên futbolê yên Kurdistanê bên sekinandin, ji ber ku lîstikvan wê beşdarî ahengên Cejna Newrozê bibin.”*

*Salih, diyar kir heta 27ê Adarê ti çalakiyeke futbolê ji aliyê federasyona futbolê ve nayên sazkirin û got “Di 28ê Adarê de wê çalakî dest pê bikin.”*



# “Kurd alîkariya me nekin jî em ê biserkevin”

» Sezona lîgên Swêdê di 14ê Nîsanê de dest pê dike û Dalkurdê amadekariyên xwe xilas kirin.

**Azad Dîcle -** Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil derbarê amadekariyên sezona nû de agahî dane Rûdawê. Kizil diyar kir ku wan di kadroyê de hinek guhertin çêkirine û got, “Her çiqas saziyên Kurdan û bi taybetî jî rayedarên sporê yên Herêma Kurdistanê alîkariya me nekin jî em ê di sezonê de biserkevin.”




Sezona 2012yê li Swêdê di 14ê Nîsanê de dest pê dike. Tîma Kurd Dalkurd ku ev du sal in ji ber yek du pûan kêm bûn nekarî derbasî lîga Superetten bibe, wê dîsa di lîga 3.de cih bigire û wê maça xwe ya yekem jî roja 14ê Nîsanê ligel tîma Yûnanî Akropolîs li Stockholmê bileyîze. Serokê Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil bi bîr xist ku Akropolîs di sezona borî de bû sedem ku Dalkurd nekarî derbasî lîga jor bibe û got, “Em ligel wan di destpêka Cotmehê de leyîstin û heta deqeya 60. em 3-0 li pêş bûn, lê di deqeyên dawî de wan sê gol avêtin qeleya me û maç 3-3 bi dawî bû û me kêm pûan standin. Lewma em bi çavê rowanşê li vê maçê mêze dikin.”

Wek agahiyên ku Kizil dan, Dalkurdê ji bo sezona 2012yê kadroya her du tîmên xwe hinek guherand û Kizil derbarê guhertinê de wiha axivî: “Du leystikvanên me transferê derve bûn, me jî ji lîga Superetten 5 leystikvanên nû transfer kirin. Du heb ji wan Kurd in ku yek jî wan berê di tîma netewî ya Swêdê ya ciwanan de dileyîst. Me herwiha antrenorê xwe jî guherint û yek Kurd, yek jî Swêdî du antrenorên nû anîn.”

### “Pêşî gotin werin, paşê bêdeng man”

Hêviyên Dalkurdê ji saziyên Kurdan û nemaze ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê hene. Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil behsa hewldanên sala borî kirin û got ku wan xwestiye bo 10 rojan herin Herêma Kurdistanê û li ser vê daxwaziyê bi rayedarên sporê yên Hikûmeta Herêma Kurdistanê re têkilî danîne, lê got, “Me dixwest ku em tîmên Kurd nas bikin, pêwendî ligel wan deynin, leystikvanên me Kurdistanê bibînin. Pêşî gotin belê werin lê hûn mesrefên xwe bidin, lê paşê bêdeng man û em nekarîn herin. Îsal ew alîkarî bidin me jî nedin me jî, me serkeftinê ji xwe re kiriye armanc û em ê biserkevin.”



Ramazan Kizil

# Keçikên Amedê bûn şampiyonê bakur û başûr



Tîma Basketbolê ya Keçikên Stêrk, du hefte berê li Bakurê Kurdistanê li bajarê Semsûrê bûn şampiyonê herêmê û dawiya hefta borî jî li Herêma Kurdistanê, di musabeqeyên basketbolê de careke din bûn şampiyon.

Tîma Amedê li Herêma Kurdistanê tîmên Hewlêr, Silêmanî û Duhokê têk birin û bû şampiyonê Kurdistanê.

Beriya pêşbirka li Helebceyê, ji aliyê Federasyona Basketbola Kurdistanê ve Tesîsa Sporê ya Basketbolê ya Navnetewî hate vekirin. Piştî vekirinê tesîsê Tîma Basketbolê ya Keçikên Hewlêrê û Tîma Basketbolê ya Keçikên Amedê hatin hemberî hev. Parlamenter, şaredar û qaymeqamê Helebceyê jî musabeqe temaşe kirin.

Di pêşbirkê de Şaredariya Baglarê, 63-55 ji tîma keçikên Hewlêrê bir. Piştî vê musabeqeyê di roja duyemîn de, tîma keçikên Amedê li hemberî tîmên Silêmanî û Duhokê jî têkoşiyan. Di van musabeqeyan de jî Şaredariya Baglarê 64-55 ji tîma Silêmaniyê û 71-66 ji tîma Duhokê bir. Keçikên Amedê hemû musabeqeyan qezenc kirin û bûn şampiyona vê musabeqeyê. Piştî musabeqeyê lîstikvanên herî serkeftî hatin hilbijartin. Hemû lîstikvanên serkeftî jî bûn para Amedê.

# Rojîn: Ez şervana zimanê diya xwe me

*Ew yek ji wan hunermendan e ku di çapemenîya kurd û tirk de herî zêde li ser tê nivisandin. Ji bilî hunermendiya xwe, ew herweha fenomeneke ku bi helwest û daxuyaniyên xwe her dibe mijara nîqaş û guftûgoyên cihêreng. Ji ber ku ji 'serbixwebûnê' hez dike, ew û hêzên ku hesabên wan yên siyasî hene qet li hev nakin. Em qala Rojînê dikin. Me bi Rojînê re li ser babetên ku tên meraq kirin hevpeyvînek çêkir. Hest û nêrînên xwe bi me re parve kirin.*



**Albûma te ya nû ya bi navê "Çû Çû" di serî de li heyranên te û dûre jî li hemû guhdarvanên muzîka kurdî pîroz be. Tu di vê albûmê de ji bilî kurdî, bi farisî, ermenkî û tirkî jî disitirî. Bi vê yekê mebest çi ye gelo?**

Rojhilata Navîn hertim di nava xwînê de ye. Zîmanên Rojhilata Navîn bi min xweş tên. Ji ber ku ez jî di nav vê êşê de me. Bi farisî, ermenî û bi gellek zimanên din li ser dikê distirim. Ez bi 11-12 zimanan distirim. Vê carê min xwest di CD ya xwe de jî bi van zimanan bêjim, ji ber ku ziman bê guneh in. Berê, dema min bi tirkî û kurdî digot, ez gellekî dihatim rexne kirin. Ez vêga dinêrim hemû kes di CD yên xwe de cîh didin straneke tirkî. Ziman û stran ji bo çanda miletekî gellekî girîng in. Mirov bi çend zimanan bikaribe bêje, ev yek dewlemendî ye. Ji aliyekî ve hin kes min rexne dikin; lê ji aliyeke din ve niha hin kesên din jî min teqlîd dikin. Ev jî pêşketinek e. Projeyekî min ya albumeke tenê bi kurdî û herweha yeka din a bi tevahî bi tirkî jî heye; lê belê, ez ê tarza xwe ya strîna bi pirrzimanî berdewam bikim.

**Te got ku vêga teqlîdên te jî çêbûne. Bala min jî kişand, dema di înternetê de li navê Rojîn tê gerandin, gellek kesên din ku heman navî bikartînin derdikevin pêş mirov. Tu vê fûryaya navên Rojîn çawa dinirxînî? Gelo li gor te, sedemê vê yekê ew e ku hin kes dixwazin ji popularîteya te û navê te sûd wergirin?**

Belê teqlîd yên eslî mezin dikin. Gotineke wilo heye. Hunermendek bi navê Küçük Emrah (Emrahê Bicûk) hebû. Dûre hunermendeke din ê bi navê Emral derketibû û navê xwe ji wî girtibû. Emrah ew kes da mehkemeyê û tazmînateke mezin jê stand. Bi rastî, di van demên dawî de, bi navê min û bi navên nêzîkî navê min, yan jî bi tarza min gellek kes derketin. Min li dij yekê ji wan bi rêya mehkemeyê doz vekiriye. Ji yeka din re jî ez ê vekim. Neheqî ye. Tu şerekî mezin didî, ew jî te teqlît dikin û te dişopînin. Bila stranbêjên bi kurdî distirin derkevin; çi dikin bila bikin, lê bila wekî xwe bin, ne wekî yekî/a din bin. Tu dinêrî, navê xwe guhertiye, stîla xwe guhertiye. Gerek temaşevan bi zanebûn li hunermendan guhdarî bikin. Bila vê yekê zanibin û hunermendên ku lê guhdarî dikin nas bikin. Ev tiştekî gellekî giring e. Ez dibêjim, "bavê min, diya min, herin Madonna teqlît bikin, çima hûn min teqlît dikin". Mesela, teqlîdên Ahmet Kaya jî hene, lê kesek navê xwe naguhere. Ev jî şerekî din e. Lê hemû kes dizanin kî resen e û kî sexte ye.

**Tu di TRT-6ê de 3 mehan xebitî, lê ev bû 3 sal in polemîk berdewam in. Hem TRT-6 û aliyê dewletê û hem PKK li dijî te ne. Ev tişt di jiyana te ya rojane de çawa xwe didin der? Dema ku tu dixwazî hunera xwe pêşkêş bikî, hem ji aliyê PKKê ve û hem jî ji aliyê eniya tirk ve tu laqayî kîjan astengiyan tê?**

Rast e, ez 3 mehan li TRT-6ê xebitîm, lê ev bû sê sal in dawî li van polemîkan nayên. Wê demê ji min re digotin, piştî hilbijartinê wê ev kanal bê girtin. Lê nehat girtin. Ev kanal bi tekoşînê hatiye qezenz kirin, divê ev der baş be, bernameyên baş tê de hebin. Em pozîtîv lê dinêrin. Ji min re digotin 'Çima naçê kanalên kurdî yên din', gelo rojekê kanaleke kurdî ji min re gotiye ku were projeyeke me ya weha heye, em dixwazin tu bernameyekî weha pêşkêş bikî? Bêwijdanan ji min re digotin, bona pere çûye TRT-6ê. Gelo eger ji bona pereyan bûna, ez dipirsim 'mirov di sê mehan de, an di sê salan de, dikare pereyeke mezin qezenç bike?' Û ez dîsa dipirsim, digotin ji bo meşhûrbûnê çûye wê derê. Gelo ez bi TRT-6ê meşhûr bûm, yan TRT-6 bi min? Bila bersiva van pirsan bidin. Dema ez çûm TRT-6ê, jixwe ez meşhûr bûm. Ev pirs hemû nîşan didin ku ez şervana zimanê xwe me, zimanê diya xwe me. Kanalên tirkî mixabin ji bilî tirkî tiştekî din qebûl nakin, lê derdê Kurdan çi ye ku li dij TRT-6ê ne? Di sala 1954ê de Radyoya Bexdayê beşa kurdî vekir. Hemû hunermendên mezin yên Kurd ên wê demê çûn li wê derê kar kirin, stirîn. Tahsîn Taha, Îsa Berwarî, Ayşe Şan, Mihemed Arif Cîzrawî…. Kêfa xelkê dihat û digotin, 'stranên kurdî êdî namirin'. Ez difikirim, kî li paş maye gelo? 1954 li ku ye û 2012 li ku ye?



**Di civîneke ku Midûrê Giştî yê TRTê İbrahim Şahin bêşdar bûyî de, bi peyvên nexweş êrişek li dij te pêk hat. Te li hember Şahin doz vekir. Dûre serokwezîr Erdogan û hevjîna xwe, Bulent Arinç li te geriyan û dilê te hênik kirin. Di dawiyê de Şahin jî lêborîn xwest. Piştî lêborînan, te dev ji doza ku li dij Şahin dayî destpêkirin berda?**

Ez ti carî dev ji doza xwe bernadim. Bila ev yek bê fêm kirin. Hemû wezîrên AKPê telefonî min kirin. Ji min re dibêjin, 'Tu jinek aştîxwaz, dilqenc û bi cesaret î'. Telefonkirina Erdogan, jina wî û ya Arinç tiştekî baş e, lê ne bes e. Ew kes hîn li ser kar e. Heqaret li hunermendekê kiriye; ew heqaret hem li Kurdan kiriye û hem jî li jinan kiriye. Piştî ku min dev jê berda, ji TRT-6ê kesek nema ku li min negeriya daku ez vegerim. Ew mirov dixwaze bibêje 'Çawa em ewqas kes li ber te digerin û tu dîsa venagerî'. Neçûna min jî, ne ji tirsa tiştekî ye û ez ji kesekî jî natirsim. Min tiştekî baş kir. Bernameya Rojîname bernameyeke bi qalîte bû. Lê ez li cihekî ne azad bim, nikarim li wir bimînim. Ji hêla din ve, diviyabû hemû kes bihatana TRT-6ê. Ji ber ku bi îmze û rayên BDPyiyan jî ev kanal vebû. Him dibêjin kanalekî kurdî vekin û him jî naçin. Siyaset tiştekî ecêb e.

**Parlamenterê BDPê Altan Tan mijara heqaretê ya Şahin wek lêpirsînt anî rojeva meclîsê. Lê nehat pejirandin. Têkiliyên te û BDPê çawa ne? Lênêzîkbûna wan a li hember te hatiye guhertin ?**

Belê, ji BDPê Altan Tan mehek piştî meseleya min û İbrahim Şahin li min geriya û got 'min ji bo midûrê TRTê İbrahim Şahin lêpirsîn daye meclîsê'. Min deynekir. Min got, spas dikim. Lê belê têkiliya min û BDPê çawa be, diviyabû BDPê ji teşkîlatên xwe re daxuyaniyek bişandana û bigotana dijminahiya hunermendên Kurd nekin. Dema min dev ji TRT-6ê berda, gellek caran êrişî min kirin, şerê min kirin, gule berdan min, nehiştin ez derkevim konseran. Jineke ji BDPê 20-30 xort ji bo êrişê şand ser min. Paçeke bi xwîn bi deriyê min ve zeliqandin. Herî tiştê xirab ew bû ku bi navê Kurdayetiyê hicûm dikirin. Min gellek caran ji bo van meseleyan telefonî wekîlên BDPê kiriye. Ji min re digotin, 'Tiştek ji destê me nayê, em gellekî ji te hez dikin, me efû bike'. Hêz di destê wan de heye, lê ez hunermendeke bi tena serê xwe me. Divê ez vê yekê jî bibêjim ku min li Başûrê Kurdistanê li dijî hunermendan tişteke bi vî rengî nedîtiye. Deriyê wan ji herkesî re vekirî ne. Qet ji bîra min naçe, li Kongreya PDKê serok Mesûd Barzanî got, 'li ser navê min sloganana neavêjin, li ser Kurd û Kurdistanê bavêjin'. Tenê min li wê derê wekî hunermendeke navnetewî pêşwazî dikin û gellekî qedr û qîmet didin hunermendan.

> **Ji aliyekî ve hin kes min rexne dikin; lê ji aliyeke din ve niha hin kesên din jî min teqlîd dikin.**

**Jiyana te ya karmendî çawa derbas dibe? Parfumên ku tu dixwazî bi navê xwe derxînî wê kengî derkevin bazarê? Ji bilî vê ti projeyên te yên din ên kar hene?**

Bêhn ji bo min gellekî muhîm e. Ez ji bêhnên xweş hez dikim. Min xwest ez bêhneke xweş bi navekî, bi markayeke kurdî derxînim. Herweha hin projeyên min ji bo jinan hene. Ez dixwazim di vê çarçoveyê de li Kurdistanê hin tiştan çêkim. Di warê tekstîlê de jî dixwazim 'Rojîn Style' çêkim. Ji goreyan bigre heta kirasan. Û dixwazim hemû tiştên ku ez ê bikim di navendekê de kom bikim. Ev yek xewna min e. Hêvîdar im ez ê karibim bi ser kevim. Ez niha mastera xwe çêdikim, li zankoyê dixwazim doktora xwe jî çêkim. Dixwazim her xwendevan bim. Min niha dest bi nivîsandinê jî kir. Di malpera T24 û İnternethaber.com de nivîsên min yên yekem derketin.

**Peyamek te yî dawî heye gelo?**

Jiyan pirr kurt e. Em tiştên baş bikin û bi dilqencî bikin. Ji xerabiyê ti kesî xêr nedîtiye. Em xelkên Rojhilata Navîn ji lîncê pirr hez dikin. Divê em ji hevûdin hez bikin. Heta mirinê hewcedariya me bi vê yekê heye…

***Hevpeyvîn: Yado Ciwan***

# Ferhad Pîrbal jî bû stranbêj!

## *“Ez dixwazim muzîkê di nava helbestên xwe de biteqînim”*

**Pêşewa Hewramî**

Mamosteyê zanîngehê Ferhad Pîrbal ku ev çend sal in bi nivîsîna çîrok, roman, helbest û lêkolînan re mijûl e, di dawiyê de biryar da ku stranan jî bêje.

Dr. Ferhad Pîrbal roja 11ê Adarê bo cara yekem li Hotela Çiwarçira konsereke muzîkê sazkir ku vê konserê jî weke semînerên wî yên helbestê xelkê kenand.

Ferhad Pîrbal heta niha bi dehan çîrok, roman, helbest û pexşan nivîsîne. Lê wek wî got ew niha bi qeydkirina CDyekê re mijûl e û dixwaze di warê strangotinê de jî xwedî bingeh be.

Dr. Ferhad Pîrbal ev sê sal in mamosteyê beşa muzîka koleja hunerên xweşik e, ew şanaziyê bi wê yekê dike ku mamosteyê vê beşê ye û diyar dike ku xwendekarên wî ew dehif dane ku stranan bêje: “Min berê wêne tevlî helbestê kiriye, niha jî ez dixwazim muzîkî di nava helbestên xwe de biteqînim.”

Dr. Ferhad dixwaze çend stranan qeydbike û di nava albumekê de belav bike: “Bavê min gellek caran di malê de stran digotin û dayika min gellek ji wan stranan hez dikir. Ez dixwazim bo bîranîna dayik û bavên xwe van stranan bikim nava albumekê.”

### “Muzîk berî her tiştî deng e”

Pîrbal got ev CD ya ku li ser dixebite ji 13 stranan pêk tê û diyar kir ku beşeke ji helbest û awazan yên wî bi xwe ne. Pîrbal wiha axivî: “Hinek awaz jî tirkmanî ne, herwiha awaza stranekê jî ya hunermendê mezin Mişko ye." Ferhad Pîrbal di wê baweriyê de ye ku muzîk berî her tiştî deng e, loma naxwaze stranên xwe bike klîp. Lê ew li ser daxwaza hevalên xwe du stranan dike klîp: "Di klîpên min de jin hene û ez nêrekeran li dora xwe kom nakim.” Mêvandar Emîn yeke ji van muzîkvanan e ku di CDyê de muzîkê lêdixe, wî got: “Bo min hurmeteke mezin e ku ez ligel Ferhad Pîrbal stranan bêjim. Ewê di vê CD ya xwe de gellekî serketî be. Ev jî ji konserê diyar e ku gellek xelk tê de amade bûn û bi stranên wî gellek dilxweş bûn.”


Wêne: Rûdaw

# Mîhrîban di labîrenta kulturan de nûnertiya Kurdistanê dike

**Ciwan Tengezar**

Hefteya borî keça min a deh salî bi kêf û kelecan hat cem min got: Babo dizanî, min îro li mûzexaneyê ala Kurdistanê di odeyeke keçeke Kurd de dît, navê keçikê Mîhrîban e, ji Rojavayê Kurdistanê ye.

Çend roj bi şûn de tevlî malbat em çûn serdana odeya Mîhrîbanê; kêfxweşiya Lorînê bû kêfxweşiya malbatî. Piştî gerîna li odeyan, xebatkarekê mûzexaneyê em agahdar kirin: ”Me heşt sal berê pirsek kir: Gelo kî dizane ka cînarên me çawa dijîn? Û piştre pirsên jêrin jî lê zêde bûn: Ji bo te wateya welat çi ye? Çi û kî biyan e? Miletên cuda bi hev re çawa dijîn? Çi baş e, çi xirab e? Wê demê pêşhikum û neyartiya biyanan di rojevê de bû. Pirranî jî hevdu nas nedikirin. Bi vê armancê me bi 50 kesên ji Asya, Ewropa û Amerikaya Başûr (keç û xort û mezin) re hevpeyvîn çêkirin. Wan ji me re çîroka jiyana xwe gotin. Adet, bîr û bawerî, xeyal û daxwazên xwe gotin û me dengên wan tomar kirin. Piştre çardeh kulturên cuda, di çardeh odeyên cuda de hatin cem hev.“

Odeya yekemîn ya Mîhrîbanê ye. Di odeyê de ala Kurdistanê, wêneyekî derhênerê Kurd Yilmaz Guney, cil û bergê kurdî, xalîçe, pirtûkên kurdî û almanî, wek yên Cîgerxwîn, Karl May û hwd. hene.

Em niha nizanin Mîhrîban li kû ye û çi karî dike, lê di dema amadekirina odeyê de ew 15 salî bûye û dixwaze bibe balyoza Kurdistanê. Derbarê Mîhrîbanê û odeya wê de ev agahî hatine nivîsandin:



**Mîhrîban**

Mîhrîban niha kurdî hîn dibe û di her fersendê de hevokên almanî werdigerîne kurdî. Rojekê ew dixwaze mîna diya xwe kurdî baş bipeyîve.

Mihrîban 15 salî ye. Li Berlînê ji dayik bûye û Kurd e. Gava mirov jê bipirse koka te ji kû ye, ew tenê li ser Kurdistanê qise dike. Gava hevalên wê yên Alman jê bipirsin li kû ye Kurdistan, dibêje: “Gelê min li her alî belav bûye.“

Malbata wê ji Rojavayê Kurdistanê ye. Ji bo diya wê pirr girîng e ku Mîhrîban çanda Kurdan hîn bibe. Ew pirr caran bi malbata xwe re diçe Kurdistana Sûriyê û herwiha ew “Kurdistana xwe” li Berlinê jî diparêze.

“Gava em diçin gundê xwe, em serdana mirov û xizmên xwe dikin. Ya herî xweş em li ser banên malan xew dikin, li azman û stêrkan dinêrin û xeyal dikin.“

**Agahiyên din**

Li Berlînê derdorê 50.000 Kurd dijîn û pirraniya wan ji Bakurê Kurdistanê hatine.

Ji sala 2002ê ve li Berlînê festîvala fîlmên kurdî li dar dikeve û Mîhrîban jî bi kêf fîlmên kurdî temaşe dike.

Herwiha li ser zimanê kurdî, baweriyên Kurdan, şahiyên Kurdan jî bi almanî agahî hene.

**Navnîşana muzexaneyê**

***Villa Global - di labîrenta kulturan de***

**Museen Tempelhof-Schöneberg (Jugend Museum Schöneberg) Hauptstr. 40-42, 10827 Berlin**

# Behmen Qubadî berpirsyariya xwe ji bîr kiriye?

**Hewlêr (Rûdaw) -** Keçeke Kurd derhênerê navdar yê Kurd Behmen Qubadî rexne dike û dibeje "te dikarî di yek ji fîlmên xwe de keçeke Kurd bikî lîstikvana sereke."

Keçeke Kurd a ji bajarê Seqiz li Rojhilatê Kurdistanê ku li Swedê dimîne di nameyeke xwe de bi navê Jîna Nîma rexneyan li derhênerê navdar yê Kurd Behmen Qubadî digire û dibêje çima ev derhênerê Kurd di bêtiriya fîlmên ku wî çêkirine de rola sereke dide lîstikvanên biyanî û ti sûd ji lîstikvanên Kurd wernegirtiye. Nav û navnîşa wê keça Kurd ne diyar in.




Ev keça Kurd, mîna ku di nameya xwe de nivîsiye, gelekî ji sînemayê hez dike û heta niha wê çendîn senaryo jî nivîsandine, wiha nerîn û gazincên xwe gihandine Behmen Qubadî: "Birêz Qubadî, ez nehatime ku nerazîbûnê nîşan bidim, ez xwe weke nûnera bi milyonan keç û xortên Kurd nabînim, herwiha ti giliya min ji Hediye Tawanî û Gulşîfte Ferehanî nîne (ku rolên sereke di fîlmên te de lîstine), ez heta Behmen Qubadî naxim bin pirsyarê jî, lê te dikarî di yek ji fîlmên xwe de keçeke Kurd bikî aktora sereke, lê ev nebû, tu dizanî çima? Ji ber ku berpirsyariya te ji bîra te çû."

# Konsûlê Komara Îslamî ya Îranê li Hewlêrê, Seyd Ezîm Huseynî:

# *Yên ku şerê rejîmê dikin ne xelkê Sûriyê ne*

Wêne: Rûdaw

Fot

Konsûlê Komara Îslamî ya Îranê li Hewlêrê Seyd Ezîm Huseynî qala rewşa niha ya Sûriyê û bûyerên li wir dike. Ew wiha dibîne ku tiştê di dezgehên medyayê de belav dibe tê mezinkirin û ne wêneyekî rast e.

**Rûdaw: Salek di ser serhildana gelê Sûriyê re derbas dibe û di vê navê de gellek kes hatin kuştin û hê jî Beşar Esed dev ji desthilatê bernedaye. Îran gihiştiye wê baweriyê ku êdî dem hatiye Beşar here?**

**Huseynî:** Îran timî bi gelan re bûye, em serbilind in ku piştî serketina şoreşa Îranê di 1979ê de heya vêga pêwendiya me hertim bi gelan re bûye, ne tenê gelên deverê lê gelên tevahiya dinyayê. Em wisa dibînin ku ev bizavên milî xwedî maf in û mafê xelkê heye xwestek û bîr û baweriyên xwe nîşan bidin. Heçî Sûriyê ye jî, em bi guherîn û reformê re ne bi wî rengê ku gelê Sûriyê dixwaze.

**Gelê Sûriyê daxwaza guhertina rejîmê dike, hûn jî bi vê yekê re ne?**

Îran herdem bi gelan re ye, nemaze bi gelê Sûriyê re; lê di baweriya min de pêwist e wêneyekî zelaltir derbarê Sûriyê li cem we jî hebe. Medyaya ku îro li dinyayê serdest e li jêr bandora Siyonizmê de ye û ev tiştekî eşkere ye. Li gor agahiyên me derbarê rewşê de, hinek tişt li Sûriyê çêdibin ku cuda ne ji tiştê ku medyaya cîhanî behs dike.

**Ji destpêka xwenîşandanan helwesta we bi rejîma Esed re bû, gelo Îranê şîret li Esed kirine ku bilez dest bi reforman bike?**

Bêguman çend caran ev yek hatiye kirin û derbarê meseleyên cuda de axaftin ligel hatiye kirin. Serokkomar Mehmûd Ehmedînejad şîret lê kiribûn ku çawa bi bûyeran re tevbigere, bi baweriya me jî dest bi hinek reformên ciddî hatiye kirin.

**Bi dîtina we Beşar Esed guh dide şîretên Îranê?**

Belê bêguman, lê rewş li Sûriyê hinekî zehmet e. Berî her tişî hevbendiyeke siyonî û amerîkî heye bo lêdana eniya berxwedanê li deverê, ew destêwerdanê di karûbarên Sûrî de dikin. Zordar û zordestên ku dibêjin bi gelên Sûriyê re ne, rewşa welatên wan ji ya Sûriyê pirr xerabtir e.

**Lê yên ku rojane li ser cadeyan daxwaza hilweşandina Esed dikin û tên kuştin xelkê Sûriyê ne, ma siyonî û amerîkî ne?**

Gelê Sûriyê bêtir ji ber kiryarên grûpên terorîst tên kuştin ku Amerîka û hinek welatên erebî piştgiriya wan dikin. Yên ku berê bi hêzên terorîstî re kar kirine li Afganistan û Lîbyayê niha hemû li Sûriyê ne, hemû jî naskirî ne û Amerîka jî dizane kî ne.

**Yanî yên ku li dijî rêjîma Beşar Esed şer dikin ne xelkên Sûriyê ne?**

Nexêr, nemaze lîderên wan ne xelkê Sûriyê ne û ew in ku berê di nav rêzên Qaîde de li Afganistan, Îraq û Lîbyayê şer kirine.

**Rêjîma Sûriyê roj li dû rojê bêtir dikeve jêr zextan, gelo dawiya vê rêjîmê nêzîk e?**

Bi baweriya min ev agahî ne zêde hûr in, rewş roj bi roj baştir dibe. Berî mehekê li Sûriyê referendûm li ser destûrê hat kirin û xelkê bi awayekî berfireh pêşwazî lê kirin û tevlî dengdanê bûn. Ev destûr jî li ser asta welatên erebî baştirîn destûr e.

**Hûn ji ber çi wiha berevaniya rêjîma Esed dikin?**

Ji ber ku Sûrî di eniya berxwedanê de ye li hember Îsraîlê. Hûn dikarin analîz bikin ji ber çi Amerîka, Îsraîl û welatên Rojava dixwazin bereya berxwedanê li vê deverê lawaz bikin?

**Lê li gor şîroveyan Îsraîl dibe ku naxwaze Beşar Esed hilweşe?**

Na, ne wisa ye, ew bi hemî hêza xwe bi Amerîka û zordarên ereb yên navçeyê re ne. Niha kî alîkariya opozisyona sûrî dike? Bereya Rojava û nemaze Amerîka ye.

**Beşar Esed guh dide şîretên Îranê**

**Li Sûriyê rewş roj li pey rojê baştir dibe**

**Helwesta Herêma Kurdistanê li hember opozisyona Sûriyê dirust e**

**Alîkariya Tirkiyeyê bo opozisyona Sûriyê ti bandoreke nêgatîf li ser pêwendiyên we û Enqereyê kir?**

Na, dibe ku hebe lê kêm bû. Ji ber em wisa diramin ku tevlî her tiştî jî divê misilman hemû bi hev re bin.

**Rûsya jî niha dibêje divê Esed dev ji desthilatê berde. Ev nayê wateya ku ji bilî Îranê ti dewleta dinyayê ne amade ye piştgiriya Esed bike?**

Wek prensîb kes û aliyên ku dixwazin biryar bo welatekî din bidin çewt in. Li her welatekî divê gelê wî welatî biryarê bide, her wek çawa li Îraqê jî wiha bû gava Amerîka û hemû yên ku piştgiriya dijberiya sûrî dikin dijî Malikî û Talabanî bûn û nedixwestin ew bibin desthilatdar, lê gelê Îraqê biryara xwe da. Divê gelê Sûriyê jî biryar bide kî diçe û kî dimîne.

**Li gor we rêjîma Esed ne zordest e?**

Na, niha referandûm hatiye kirin bo destûreke nû û pirrbûna partiyan dest pê kir. Belê berê li Sûriyê hinek kêşe hebûn, lê hê jî rewşa wê pirr baştir bû ji gellek dewletên erebî yên din. Niha piştî vê referendûmê pêwendiya di navbera gel û desthilata Sûriyê de pirr baş bûye. Hûn diçin guhdariyê li opozisyonê dikin ku ji sedî 90ê wan li derveyî Sûriyê ne.

**Di vê dawiyê de hinek kesên girêdayî artêşa sûrî reviyan û hatin Herêma Kurdistanê, ti agahiyên we li ser vê yekê hene?**

Li gor agahiyên me ew leşkerên kurd in û pirr kêm in jî. Dibe ku ji 30-50 kes bin. Şîretan li we dikim ku serdana Sûriyê bikin û rewşê ji nêzîk ve bibînin. Rewş ne bi wî rengî ye ku medyayê mezin kiriye.

**We daxwaz ji Herêma Kurdistanê nekiriye wan leşkeran yan leşkerên artêşa azad çekdar neke?**

Spas ji Xweda re ku birayên Herêma Kurdistanê bi xwe di wê baweriyê de ne ku opozisyona ku daxwaza rûxandina rejîma sûrî dike bi xwe pirr xerabtir e bo gelê sûrî û nemaze bo Kurdan, lewra heya niha helwesta wan li hember wan helwesteke dirust e.

**Hûn rola Kurdên Sûriyê di van bûyeran de çawa dibînin?**

Ew naxwazin xwe tevlî hinek mijaran bikin, biryara wan bi raya min biryareke aqilmend e.

**Hemû nîşan wisa derdixin ku rûxandina rejîma sûrî bêguman e, we xwe ji tiştekî wisa re amade kiriye?**

Hinek kesan dema berî meha Remezana borî danîbûn, niha vaye em dîsa nêzîkî meha Remezanê dibin û hê Esed neketiye. Dîsa dibêjim, medyaya ku derbarê Sûriyê de agahiyan dide, ne rast e.

***Hevpeyvîn: Hêvîdar Ehmed***



Wêne: Rûdaw

# Bi dehan grûbên Emo li Silêmaniyê hene

# Emo xwîna mil û rahnên hev dimijin

Neberd Husên

Çar sal in Omêd li bajarê Silêmaniyê tevlî grûbeke Emo bûye, endamên vê grûbê rojane xwîna hev dimijin. Omêd dibêje: "Her roj em xwîna mil, zend û rahnên hev dimijin."

Li gor Omêd grûbên Emo li Herêma Kurdistanê zêdetir dibin, nemaze li bajarê Silêmaniyê: "Bi dehan grûbên Emo li Silêmaniyê hene, ku her grûbek ne kêmî 5 kesan e."

Omêd, ku temenê wî 16 sal in, di nava grûbê de nasnavê bavê dînan wergirtiye û serokê grûbeke 8 kesî ye ku 4 ji wan keç in, ew hemû rojane xwîna hev dimijin û hemû jî bi kêfa xwe bûne Emo.

Wek Omêd dibêje, keç kêmtir bi wan re dicivin ji tirsa eşkerebûna wan ji aliyê merivên wan: "Bi gelemperî em li parka Azadî dicivin."

Cara pêşî grûbên Emo li Ewropayê derketine, çend sal in ev grûb li Herêma Kurdistanê jî derketine û pirraniya endamên wan jî li jêr 17 salan e.

Emoyên Herêma Kurdistanê du reng in, rengek tenê bi cil û berg û stîla por berdanê grûbên Emo pêk tînin, rengê duyem jî ji xeynî cil û bergan xwîna hev dimijin û xwe birîndar dikin.

Di warê tendirustiyê de xwînmijandin zerereke mezin digihîne kesên ku xwe wek Emo dibînin û xwîna hev dimijin.

Pisporê nexweşiyên xwînê Dr. Mihemed Zahir dibêje: "Madeyên ku di nav xwînê de hene, mîde nikare wan bicû û mirov rastî gellek nexweşiyan tîne, herwiha ger kesek nexweş be, nexweşiya xwe digihîne yên din jî."

Rêbwar (17) serokê grûbeke 5 kesî ye, dibêje: "Zirara me nagihîje tu kesî, di nav grûba me de tenê ez kur im, em xwîna hev namijin û xwe birîndar nakin, tenê guhdariya stranan dikin û rap dikin, lê stîla cil û bergên me wek a Emoyan e."

**Emoyên Kurdistanê du reng in: Hinek tenê cil û bergên taybet li xwe dikin, hinek jî xwîna hev dimijin**

Navê grûba Rêbwar Pepûle ye yanî pinpinîk; wek ku ew bi xwe dibêje pinpinîk zirarê nagihînin ti kesî, lewma ev nav hilbijartine.



### Li Bexdayê Emo di metirsiyê de ne

Grûbên Emo li Bexda û navçeyên başûr û navenda Îraqê ji tirsa kuştinê ku ev demeke ji aliyê grûbên çekdarî yên nenaskirî kampanyayek li dijî wan dest pê kirine, bo veşartina porê xwe kuman datînin serê xwe, ji ber kesê ku stîla cil û berg û porê wî wek Emo be dikeve ber xetera kuştinê.

Mistefa Xeldûn (21) ji Bexdayê, dibêje wê kampanyayê grûbên Emo li Bexdayê newêrin xwe kifş bikin: "Gefa kuştinê li ser wan heye. Heya niha 56 Emo li Bexdayê hatine kuştin, heftiya çûyî yek li taxa E`zemiye hat kuştin."

Berî ku Mistefa tevlî grûbên Emo bibe, ji keçekê hez kiriye, lê keç bi şertekî razî bûye ku Mistefa bibe Emo: "Ji ber xatirê wê keçê bûm Emo, niha hînî mêtina xwînê bûme û nikarim dev jê berdim."

### Emo diyardeyeke dinyaya nûjen e

Şehd Obêd (16), rûniştiya Bexda ku yek ji Emoyan e, dibêje: "Ji destpêka vê mehê hêzên polîs li Kazimiye dest bi kampanyaya girtina Emoyan kirin û hejmareke zêde girtin."

Li hember vê kampanyaya polîsan, serokê komîteya mafên mirovan Zuhêr E`recî got: "Girtina Emoyan rê li ber azadiya takekesan digire û berovajî yasayê ye."

Rêveberê polîsê Hewlêrê Ebdilxaliq Telet got: "Heya niha me tiştekî bi vî rengî nebihîstiye, ger Emo li Hewlêrê jî hebin em ê li gor qanûnê ligel wan tevbigerin."

Her çiqasî li Îraqê ew nêrîn berbelav e ku Emo perestkar in, lê pispor û civakzan dibêjin Emo diyardeyeke dinyaya nûjen e û ciwan bi rêya wê dixwazin xwe cuda bikin ji kesên din û xwe ji kevneşopiyên lixwekirina cil û bergan dûr bikin.

Parlamentera Îraqî Sefiye Suhêl daxwaz ji wezareta navxwe ya Îraqê kir ciwanên Emo biparêze û rê nede Emo bikevin ber kampanyaya kuştin û tunekirina hêzên mezhebî û got: "Eger ev fenomen nexweşî be, êdî pêdiviya wê ne bi qirkirina nexweşan, lê bi dermankirina wan heye."

# Jinan pirsî, jinan bersiv dan û jinan rexne kirin

» Jinên Kurd ji her çar perçeyên Kurdistanê bo nîqaş û çareserkirina pirsgirêkên xwe li Berlînê hatim cem hev

Armanc Egîd Nêrweyî

Roja 9ê Adarê di çarçoveya bernameya Hefteya Kurdî li Berlînê duyemîn Konferansa Jinên Kurdên Diyaspora hat li dar xistin. Ji her çar perçeyên Kurdistanê û diyasporayê jinên Kurd tevlî konferansê bûn. Hinek ji jinên beşdar Başûrê Kurdistanê wek deriyê çareserkirina pirsgirêka jinan binav kirin û hinêk jinên din jî rexneyên dijwar li desthilatê girtin.

Benaz Salih ku ji Swêdê tevlî bibû di semînera xwe da parlemenê wek cihek ne tendirust binav kir û got "Jin azad nîne di parlemenê de, ew biryara xwe ji serokên partiyên xwe digrin, nikarin guherîneke nû çêkin. Grûba jinên ku girêdayî PDK û YNKê ne kartonî ne û tenê jimara jinan dinivîsin." Di berdewamiya axaftina xwe de Benaz Salih a sosyolog dibêje "axa, eşîret û kultura Îslamê desthilatên welatê me ne, sîstemeke modern nikare biserkeve."

Sabriye Sevgat ji Saziya Kurdên Êzidî li Almanya di semînera xwe de pirr rexne li Hikûmeta Herêma Kurdistanê girtin û derbarê xwestekên jinên Êzidî ji Hikûmeta Hermêma Kurdistanê wiha axivî: "Jina Êzidî sê car tê bindestkirin: ji aliyê netewî, olî û zayendî de. Em dixwazîn bila rêz li jinê bêgirtin, mafê wê neyê binpêkirin. Keçên mîr, şêx û pîran nikarin bi kesek din re bizewicin, divê ev bi biryarekê yasayî ji holê bê rakirin."

Sebriya Sevgat di dawiya axaftina xwe de got jinên Êzidî li bakur dikarin berevaniyê ji xwe bikin, "lê yên başûrî nikarin û bindest in."

### Hewl didin konferansê li Kurdistanê saz bikin

Peyman Ebdulah di axaftina xwe de daxuyand ku komîteya amadekar ji hemû Ewropa û Kurdistanê jinan vexandin Berlînê daku bihev re li ser pirsgirêk û çareseriyan nîqaş bikin û got, "Armanca me hişyarkirin û bihêzkirina jinan bû li herçar parçeyên welat, dema Kurdistan wek dewlet hat ragihandin em jî weke jin dibin xwediyê mafên xwe."

Derbarê lidarxistina konferansê cima ne li Kurdistanê, lê li Belînê Peyman Ebdulah da got "Hêviya me ew e rêya me bê vekirin ji aliyê saziyên girêdayî jinan û taybet Hikûmeta Herema Kurdistanê, têkiliyên me berdewam dikin digel jinên endamên parlemanê, ku ew karek wiha bikin"

### "Rûdaw çavkaniyeke rast û serkeftî ye"

Di konferansê da behsa sinetkirina jinan jî hat kirin, hin jinan nepejirand û xwestin ku ev mijar neyê nîqaşkirin, ji ber ku wezareta kar û barên olî sinetê qedexe kiriye, lê hin jinên din rayedarên Herêma Kurdistanê û bi taybetî zanayên olî berpirsiyar danîn û ew rexne kirin.

Pirraniya jinên konferansê amadebûn Rojnama Rûdawê wek çavkaniyeke rast û serkeftî nîşan dan û xwestin ku mijarên civakî yên ku Rûdaw giringiyê dide wan berdewam bin lê ku bikarin çareseriyan jî bigerin û belav bikin. Sirwe xan yek ji beşdarên konferansê bu di semînerekî de ku behsa Rûdawê dihat kirin, got, "Ya ku Rûdaw lê digere kêşeyên civakî ne, em nabêjîn xirab e, lê em dibêjin ew karê ku hatiye kirin pir xirab e, ji bo wê jî dixwazîn çareseriyên wê bên belavkirin heya ku jin xwe ronî bikin."

Jinên ku mijarên xwe pêşkêşkirin ev in: Perwîn Taha-PDK, Nîlûfer Koç-KNK, Necîba Qeredaxî-Rojnamevan, Buhar Xezirî ji Rojhelat, Benaz Salih-Sosyolog ji Swêd, Çigdem Zeylan û Sabriye Sevgat ji Saziya Kurdên Êzdî Almanya, Necîba Ûmer-PÇDK ji Başûr, Peyman Ebdulah û Semîra Ebdulah jî moderatoriyê kirin.

## Statîstîkên DMM û Peyrika Tirkiyeyê



**Mahmut Kilinc**

Dadgeha Mafên Mirovan a Ewropayê (DMM) statîstîkên dewletên ku Peymana Mafên Mirovan îmze kirine di malpera xwe da weşand. Wekî tê zanîn, dadgeh di bin sîwana Konseya Ewropayê de ye û 47 dewletan peyman îmze kirine. Hemwelatiyên van dewletan piştî ku hemî rêûrêbazên darizandinê li welatê wan bi dawî bû, lê takekes biryara dadgehê welatê xwe nepejirand, mafê wî/wê heye ku serî li DMMê ya li Strasburgê bide.

Dadgeh di sala 1959ê de hatiye damezrandin û dadgehê derbarê rewşa mafên mirovan di 52 salên borî de li wan dewletên layegir statîstîkên xwe weşandin. Di nav 47 dewletan de Tirkiye ew dewlet e ku herî zêde Peymana Mafên Mirovan binpê kiriye. Dewleta tirk di hundirî van salan da 2747 caran sûcdar hatiye dîtin. Ev hejmar peyrika (siçîl) dewleta tirk e.

Bi van biryaran tê dîtin ku ti xalên ku Tirkiyeyê binpê nekirine, nemane. Wate ev e ku Tirkiyeyê him di hejmara mehkûm kirinê de û him jî bi binpêkirina hemî xalan de, di nav 47 dewletan de di rêza yekem de ye.

Piştî Tirkiyeyê, Federasyona Rûsyayê tê. Lê raber kirina Tirkiyeyê û Rûsyayê ne di cîh de ye, ji ber ku him serjimara Rûsyayê sê caran ji ya Tirkiyeyê bêtir e, him jî piştê belavbûna Yekîtiya Sovyetan demek dirêj ew welat di nav kaosê de bû. Dema ku rewşa Rûsyayê wiha bû, dewleta tirk bi pesna "dewletek demokrat û dadî" serxweş dibû. Herweha di derbarê 15 hezar 940 serlêdanan de jî hê biryar nehatiye dayîn, ku ew hejmar jî dîsa serkêşiyê dike para Tirkiyeyê. Di van biryaran da hêlek gellekî balkêş heye ku tenê Tirkiye û Rûsya di binpêkirina mafê jiyanê de hatine mehkûm kirin.

Em dizanin ku pirraniya serlêdanên ji Tirkiyeyê takekesên Kurd in û ev ezmûna Tirkiyeyê nîşaneya zorûzilma li ser miletê Kurd e. Her çiqasî di destê me de senifandinên (tesnîf) van biryaran tine be jî, him di biryarên hatine dayîn de û him jî di yên encam negirtî de mexdûr pirranî kesên Kurd in.

Bi baweriya min ev hejmar ji rastiyê gellekî kêmtir in, ango dema mirov li rûxandina ku dewleta tirk di bist salên borî de li Bakurê Kurdistanê kirî binêrê û vê hejmarê bide ber hev, hejmara serlêdanan gellekî hindek dixuyê. Em dizanin ku herî kêm sê hezar gund hatin şewitandin û vala kirin, 3 milyon kes hatin koçber kirin, qala 17 hezar kuştinên "faîlî mechûl" tê kirin, bi deh hezaran kesî lêdan û heqaret dît, bi hezaran bûyerên tecawûzî hene, bi deh hezaran kes bi dadwerane nehatin darizandin, dîsa bi deh hezaran kes ji ber "mafê azadiya rêxistinî û ramanî" hatin ragirtin û ceza kirin û hwd. Ligel ewqas zorûzilmê ew hejmara serlêdanê bi me dide xuyakirin ku Kurd bi qasî ku pêwist e serî li rêyên hiqûqî nadin.

Li gor statîstîkan 2747 biryar hatine dayîn, dadgehê 26 hezar 929 serlêdan ji ber hêncetên cûda paşve vegerandiye û 15 hezar 940 serlêdan li ber destê dadgehê ne. Hemî dikin 45 hezar 616, ev rekora rastiya rûreşiya Tirkiyeyê ye.

Hê îro jî serlêdan bênavbir didomin, ji ber ku zorûzilma li Bakurê Kurdistanê bi dawî nehatiye. Mînaka vê zorûzilmê ya herî dawî qetlîama gundê Roboskê ye. Ji ser qetlîamê re nêzikî sê mehan derbas bûn, lê hê "lêpirsîn" bi encam nebûye! Heçku kesên fermana êrişê dane li Enqerê ne û her kes dizane ku bê agahdariya Serokwezîr û Serkanê Giştî êrişek weha nabe. Ev doz jî wê heta DMMê here, ji ber ku eger darizandinek bibe jî (ku ez ne bawerim), encamek dadwerane wê jê dernakeve.

Rayedarên dewleta tirk divê fam bikin, heta ku pirsgirêka Bakurê Kurdistanê çareser nebe, peyrika wê jî paqiş nabe.

***Newroz pîroz be.***

## Em çi tînin serê Mûsa Anter!



**Selahattin Çelîk**

Min di gotareke Musa Anter ya rojnameyê de xwendibû. Wî pesnên zarokên xwe dida. Digot ku li welatekî xwedî demokrasiyeka herî pêş û dostê Kurdan, li Swedê ne. Rast bû. Lê ka li lîstoka qederê binêrin, yek ji kujerên wî jî dabû rê û xwe gihandibû keleha demokrasiyê, Swedê. Vêga wî ji zarokên Musa Anter zêdetir ji demokrasiya Swedê sûd werdigirt.

Eger pêzaniyên ku Abdulkadir Aygan dabûn rast bin û êdî bivênevê em rast qebûl dikin: Bi rêya Cemil Işik (Hogir) Musa Anter kişandibûn xefikekê û bi awayekî hov lê dabûn. Hamid Yildirimê Şirnexî (Dijwar) li gorî planê tevnegeriyabû û di nivê rê de lê dabû û ew kuştibû. Eger Hamid li gorî planê tevbigeriya, hingê wê tiştê ku li Vedat Aydin kiribûn, bianîna serî Musa Anter jî; wê îşkence lê kiribûne û di dawiyê de bi awayekî hovtir ew kuştibûne. Kî? Tîma ku li benda Hamid û Musa Anter bû. Têde Yeşil (Mahmut Yildirim), Abdulkadir Aygan û yên din hebûn.

Ev zanyarî hemû êdî tên zanîn. Naxwe mebesta min çi ye?

Kujerên Musa Anter hemû endamên JÎTEMê ne. Ahmet Cem Ersever ji Enqerê ji bona bûyerê diçe Amedê. Ango kujer endamên dezgeheka dewletê ne. Kujerê Musa Anter Komara Tirkiyeyê ye, weke bi hezaran kuştinên din. Ev encam, nasname û navnîşan gellekî eşkere ye.

Rast e, hê pirsên giring yên bersivdanê henê: Kî Musa Anter şandibû hevdîtina bi aşarteyan re? Yê li ba Musa Anter, Orhan Miroglu dizaniya ku diçin bi kû derê ve? Ji ber ku ew bixwe pirsan dike, lê heya îro di daxuyaniyên xwe de bersiva vê pirsê nedaye.

**Ahmet Cem Ersever û aşarte-kujerên wî çawa bi hêsanî çûbûn Kurdistana Başûr û ji warên desthilatên Başûr Hogir û yê li balê, ango Hamid, bi xwe re zivirandibûn Tirkiyeyê**

Gelo PKKê dizanî ku Hogir li ba JÎTEMê ye? Ji ezmûnê xwe dibêjim: Eger PKKê zanibûye, heya daxuyaniyên Abdulkadir Aygan ev têkiliyên Hogir û JÎTEMê veşartî ne dima. PKKê nekariye zanyariyeke wisa giring veşartî bihêle. An jî karbidestên herêmî yên PKKê biryar dabûn? Divê bi awayekî lez û fesîh, PKK bersiva vê pirsê bide.

Cemil Işik (Hogir) li Başûr di bin kontrola karbidestên Herêma Kurdistanê de bû. Ji Almanyayê hin kesan pêre hevdîtin pêk anîbûn û tomarî ser vîdeo kiribûn. Em dizanin di wê serdemê de tengasiyên desthilata Başûr mezin û gellek bûn. Lê êdî îro dikarin hin tiştan bêjin: Ahmet Cem Ersever û aşarte-kujerên wî çawa bi hêsanî çûbûn Kurdistana Başûr û ji warên desthilatên Başûr Hogir û yê li balê, ango Hamid, bi xwe re zivirandibûn Tirkiyeyê? Ji karbidestên Başûr kî şahidiya wê bûyerê kiribû? Divê ji bo vê pirsê bersiva wan hebê.

Ji aliyê din PKK: Ji sedemê veqetîna wî û bûyerên wî yên li Colemêrgê, li Hogir dabû. Dibe ji tirsan be, hê jî li mala bavê Hogir, wêneyê wî û yê Ocalan li cem hev hatine daliqandin.

Lêgerîn û vekolîna me ji bo bersivên van pirsan hewldaneke rast û rewa ye. Ji yên rêzê heya yên lêkolîner, mafe me heye ku em bûyerê bi hemû kitekitên wê hîn bibin. Lê em çi dikin? Hinek ji me, bi zanebûn an jî ne bi zanebûn kitekitan mezin dikin û didin pêş, bi mebestên subjektîv û kesayetî, wan di nakokiyên navxwe de bi kar tînin. Di dawiyê de mijar şîlo dibe, kujer û dezgeha wan tê veşartin, em bi hevûdin re şer dikin. Her çibe jî, divê em nasname û navnîşana kujeran qet winda nekin.

## 5 hezar şehîd û çend hezar nexweşên kîmyewî!



**Dr. Îkram Husên**

Di bîranînên Helebçe de yan kêm caran qala nexweşên kîmyewî yên Helebçe tê kirin yan jî bi carekê nayê kirin. Bila em şaş neçin ku min negotiye birîndarên kîmyewî, ji ber ku li ba Hikûmeta Herêma Kurdistanê nexweşê kîmyewî heya negihe halê mirinê nasnavê birîndarê kîmyewî wernagire.

Di kîmyabarankirina Helebçe de 5 hezar kes şehîd ketin, her çiqasî serjimêriyeke seranserî tune, lê hejmar wisa hatiye ku 9 hezar jî nexweşên kîmyewî hene, helbet rûniştiyên wê demê yên Helebçe bi tevahî kêm zêde ketin ber çekên kîmyewî.

Mînak pirr in: li deverekê kesek yan çend kes şehîd bûn û her li wê deverê kesek yan çend kes zindî derketin, ji xeynî ku heya vêga ti lêkolînek li ser nexweşên çekên kîmyewî yan ti rûpîvanek nehatiye kirin, kesên ku rasterast nîşanên çekên kîmyewî li ser wan hene tiştekî berçav ji wan re nehatiye kirin ku hêjayî behskirinê be.

Berî her tiştî karbidestên Helebçe û hikûmetê şaş diçin, gava dibêjin çareserkirina birîndarên kîmyewî, ji ber ku bi gotina Prof. Mistefa Qanî ku li Îranê serpereştiya nexweşên kîmyewî dike, çareseriya birîndarên kîmyewî tenê ewqas e rê bê girtin li ber xerabtirbûna rewşa kesên nexweş.

Li navenda çareserkirina nexweşên çekên kîmyewî li Helebçe ku li ser rêxistineke almanî ye û ti pêwendiya wê bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve tune, zêdeyî 1500 nexweş dermanan werdigirin.

Her nexweşekî kîmyewî ku bextreşî dîtiye, rastî cureyek ji şoka derûnî hatiye, hemû kesên nexweşên kîmyewî ew eger li pêşber wî heye ku rojekê ji rojan bibe birîndarê kîmyewî. Salane rewşên nû derdikevin holê û dû re tê zanîn ku bandora kîmyayê heye li ser; zarokek di nav komeke miriyên bi çekên kîmyewî de zindî dimîne kî dikare bêje kartêkirina kîmyewî li ser tune, nemaze ku xaza kîmyewî ya ku li Helebçe hat bikaranîn ger derbasî laşê mirov bibe, tevlî şaneyên wî dibe û êdî di wan de dimîne.

9 hezar kes yan yên ku zindî man ji wan 9 hezar kesan pêdiviya wan bi testan heye da ku bê zanîn rewşa nexweşiya wan di çi astekê de ye û bên piştrastkirin, gelo rewşa wan a derûnî asayî ye yan na. Meselê ne veqetandin meaşan e ji bo wan, lê mesele rewşa samxlemiya wan 9 hezar kesan e, mixabin ger em bi zimanekî zanistî bipeyivin, em dikarin bêjin ku giranî bi ti birîndarekî kîmyewî nehatiye dayin, ji ber ku gava rewşa wî xerab nebûbe ew wê demê sûd ji derman werdigire, lê ji ber nebûna alavên testkirinê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji kesî bawer nake û nexweşên kîmyewî heya negihe halê mirinê wek birîndarê kîmyewî nayê hejmartin û her dema ku bû birîndarê kîmyewî jî êdî divê li benda kerema Xwedê bimîne heya ji wezareta şehîdan beşekî ji wan pereyên ku xerc kirine lê vegerînin.

Hêvîdar Ehmed
Hawar Ebdilrezaq




# Kurdistan: *Exxon Mobil dest bi kar kir*
# Îraq: *Peyman hatiye rawestandin*

Piştî ku hikûmeta navendî ya Îraqê ragihand ku şîrketa Exxon Mobil peymana xwe bi Kurdistanê re rawestandiye, berpirsên Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî eşkere kirin ku şîrketa Exxon Mobil di bicihkirina peymana xwe de berdewam e û niha jî dest bi kar kiriye,.

Di Mijdara 2011ê de Hikûmeta Herêma Kurdistanê eşkere kir ku şîrketa Exxon Mobil a amerîkî bi mebesta pêşxistin û dîtina petrolê peymanek pê re îmze kir. Vê peymanê jî hikûmeta Îraqê aciz kir û berpirsên Bexdayê bo neçarkirina şîrketê da ku peymana xwe bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê re betal bike, hemû hewldanên xwe ceribandin.

Berpirsekî bilind yê wezareta samanên xwezayî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ku ji tevahiya peymana di navbera Herêma Kurdistanê û Exxon Mobil agahdar e, lê belê nexwest navê wî bê kifşkirin ji Rûdawê re got: “Gotinên wezîrê petrolê yê Îraqê bê bingeh in û peymana Exxon bi Herêma Kurdistanê re berdewam dike û niha li Hewlêr û çend deverên din dest bi karê dîtina petrolê jî kiriye.”

### Wezîrê petrolê yê Îraqê: Exxon Mobil ji me re nameyek şand

Lê belê heftiya borî, wezîrê petrolê yê Îraqê Ebdilkerîm Luyêbî ragihand şîrketa Exxon Mobil ji hikûmeta Îraqê re nameyek şandiye û tê de ragihandiye ku peymana xwe bi hikûmeta Herêma Kurdistanê re rawestandiye û di vî warî de got jî: “Di 5ê Adarê de nameya rawestandina girêbesta Exxon Mobil bi Herêma Kurdistanê re gihiştiye destê me.”

Serokê dîwana serokayetiya Herêma Kurdistanê Fûad Husên, di cih de piştî gotinên wezîrê petrolê yê Îraqê red kir û ragihand: “Em bawer nakin ev gotina wezîrê petrolê yê Îraqê rast be û ew tenê gotina wî ye.”

### Hikûmeta Herêma Kurdistanê 47 peyman îmze kirine

Hikûmeta Îraqê di dema borî de ragihandiye ku her şîrketek bixwaze peymanê bi Herêma Kurdistanê re îmze bike divê bi rêya hikûmeta Îraqê be û heya niha jî wezareta samanên xwezayî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê 47 peymanên berhemanîna petrolê bi şîrketên biyanî re îmze kiriye bêyî ku şêwira Bexdayê bike. Cîgirê serokwezîrê Îraqê bo karûbarên enerjiyê Husên Şehristanî jî got “ev peyman neyasayî ye.”

Dûr re Bexda gef li Exxon Mobil kir ku ger wê peymana xwe betal neke wê ji dayîna moletan bê dûrxistin û peymana di navbera Bexda û Exxon Mobil de jê wê bê sererastkirin.

Pisporê warê xaz û petrolê Elî Belo derbarê bandora rawestandina peymana di navbera Herêma Kurdistanê û Exxon Mobil de wek çawa wezîrê petrolê yê behs dike, dibêje: “Ger ev rast be, divabû hikûmeta Îraqê behsa dema rawestandina peymanê bikira ku ev rawestandin heya kengî ye. Bi her awayekî be Exxon Mobil bi hêsanî dest ji Herêma Kurdistanê bernade, ji ber ku peymana wê bi Herêma Kurdistanê re di aliyê qezancê de ye û duyem jî Herêma Kurdistanê di aliyê petrola yedek de cihekî dewlemend e.”

Berpirsê wezareta samanên xwezayî ya Herêma Kurdistanê jî eşkere kir ku: “Hejmara şîrketên mezin yên petrolê li Herêma Kurdistanê ber bi zêdebûnê diçe û hebûna wan jî li Kurdistanê di berjewendiya hemû Îraqê de ye.”

## NEWROZ: Herêma Kurdistanê çaverêyî 70 hezar tûristan e

**Koln (Rûdaw) -** Di van salên dawî de her ku diçe hejmara tûristên ku serdana Herêma Kurdistanê dikin zêdetir dibe. Bi taybetî rewşa ewlekariyê ya baş û xwezaya Kurdistanê ya xweş du sedemên sereke ne ji bo kişandina tûrîstan bo Herêma Kurdistanê. Lê di rojên taybet te bi carekê de hejmarên zêde yên tûrîstan berê xwe didin Herêma Kurdistanê.

Li gor daxuyaniya berdevkê Civata Giştî ya Tûrîzmê ya Herêma Kurdistanê Nadir Rostî, ku ji AKnewsê re axiviye, ew li bendê ne ku bi helkefta Newroza îsal 70 hezar tûrîst serdana Herêma Kurdistanê bikin. Li gor Rostî, di heyama çend rojên borî de zêdetirî 2 hezar tûrîst ji Îranê hatine Herêma Kurdistanê. Rostî herwiha bal kişand ser wê yeke jî ku ne tenê ji derve tûrîst serdana Kurdistanê dikin, lê jî parêzgehên din ên Îraqê jî gellek tûrist berê xwe didin Herêma Kurdiastanê.

Sala borî bi helkefta Newrozê derdorê 45 hezar tûrîstan berê xwe dabûn Herêma Kurdistanê û li gor sala borî hejmara îsal berbiçav zêde dibe. Serokê Komela Mêvanxane û Xaringehên Kurdistanê, Hêriş Ehmed, jî ji AKnewsê re axiviye û diyar kiriye ku beriya cejna Newrozê dest pê bike jî, ji sedî 80yê hotêl û mêvanxaneyan hatine girtin.



# Kêmxew zêde dixwin

» Kesên ku bi şevan kêmtir radikevin, bi roj zû dilebitin û li gor kesên din zêdetir dixwin.

Li gor encama hinek lêkolînan pispor dibêjin neraketina şevê dibe sedemê qelewbûnê.

Lêkolînvanên Mayo Clinic li Minnesota a Amerîkayê eşkere kirin ku neraketina bi rêjeya pêwist a şevê dibe sedem ku mirov xwarinê zêdetir bixwe.

Lêkolîn li pêşber kongreya zanistî ya amerîkî bo dil derbarê xwarin û çalakiyên sporê hat kifşkirin û li ser 17 kesên ciwan yên saxlem hatibû kirin. Bo dema 8 şevan nîvê ciwanan bi awayekî pêwist raketibûn û nîvê din jî du beş ji sê beşê xewa wan ji wan hatibû kêmkirin, dû re hatibûn serpişkirin ji wê xwarina ku dixwin.

Encam jî wiha derket hole: Kesên ku bi şevan 80 xulekan kêmtir ji rêjeya pêwist radikevin 549 kalorî zêdetir ji yên din dixwin.

Pisporê dil û cîgirê profesor li Mayo Clinic Dr. Calvin got, "Kêmxewî kêşeyeke mezin e û ji sedî 28 kesên gihiştî bi şevan kêmî 5 saetan radizin, lewma zû dibetilin û zêde jî dixwin."

Zana encaman wiha şîrove dikin ku xewa kêm dibe sedemê bilindkirina asta hinek hormonan ku bandorê li ser arezûya xwarinê dikin, wek hormonên lepten û gerleen, ev jî wisa dike ku kesên ku kêm radizin ji kesên din zêdetir bixwin û zûtir qelew bibin.



## Pênc şîretên sade, lê pirr girîng!

• Doktor hişyariyê didin ku ji her agahiyeke pizîşkî ku mirov dibihîsin bawer nekin, û dibêjin "dibe ku lêgerîna di înternetê de li nexweşiyekê bibe sedemê wergirtina agahiyên çewt û metirsiyê li cem yê nexweş çêbike ku di rastiyê de ne wiha be."

• Pêwîst e hemû dermanên ku nexweş berê bikar anîne û dîroka bikaranîna wan li cem doktor bên behskirin.

• Xwarina rêjeya pêwîst a dermanên ku doktor dibêje di dema xwe ya tekûz de, kirîna derman bê pirsa doktor yan zêde bikaranîna rêjeya diyarkirî di derman de, xeter e.

• Bê şêwirkirina doktor encamdana her testekê dibe ku zirarmend be û ne pêwîst be jî.

• Lîstina bi xwarina derman xeter e, pêwîst e xwarina her dermanekî bi şêwira doktor be.

## Kumik dermanxaneyeke xwezayî ne

» Kumik bandorek baş li ser aramkirina derûnî û melankoliyê dikin.

Fêdeyên kumikan ewqasî zêde ne ku bo tendirustiya mirovan wek dermanxaneyeke giya ya xwezayî bên dîtin.

Ji komeleya misrî bo bergirî û hesasiyetê Dr. Mecîd Bedran dibêje di kumikan de gellek proteîn hene ku bakteriyên bi sûd yên laşê mirov çalak dikin, herwiha çavkaniyeke bihêz a hesinan in û ya selenium ku bergiriya laş zêde dike û eserên pirbûnê jî di mirovan de dereng dixe.

Navborî herwiha got ku nebûna selenium di laş de dibe sedemê derketina nefestengî û nezokiyê li ba mêran, kumik herwiha bo fosfor, hesin û potasium jî çavkaniyeke baş in.

Dr. Bedran diyar kir ku kumik bandoreke baş li ser aramkirina derûn û mêlankoliyê dikin, herwiha parastina ji krîza mejî, bi ser de jî sîstema bergiriya laş bihêz dikin.



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1-Serokê Konseya Rêvebir ya KCK. 2-Pozîtîf, baş, maqûl – Di dema çandiniyê de veteqandin û cudakirina rêza sebze û zad – Markayek seet û katjimêran. 3- Evîndara Memê Alan – Sembola elementa Nîkel ê – Hejmarek, 10x10 – Xwarina heywanan. 4- Kesên girêdayî komel yan dezgehekê (berepaş) – Hacet û amûrek muzîkê – Navê darekê, navekî jinan. 5- Cûreyekî çûk û teyrikan (berepaş) – Lez, ecele, bi xar. 6- Gunehkar, zinêkar, heram. 7- Du tîpên gotina "ûhû" – Tî, bê av, ziwa. 8- Şaşo maşo, şevlêgeryayî. 9- Maddeyek kîmyewî, jê bombeya atomê çêdibe – Hewa, gazek xwezayî, oksîjen – Karakter, adet. 10- Navekî zilaman, zîrek, hişmend.

**Serejêr:** 1-Nivîskarekî Kurd. 2- Zik, çerm – Dûrî kerema hazir, dûrî civatê (berepaş). 3- Hurmetkar, qedirqiran – Ramûsan,lîztika fûtbolê. 4- Gotinek henekpêkirinê, bilindkirina tilîya navê (berepaş) – Ne xêr, nabe. 5- Kesê ku "tîner"ê dikşîne, muptelayê tînerê. 6- Mirovên qenc yên dema pêxemberan. 7- Mam, ap – Çak nebû, xirab e, ne baş e (berepaş). 8- Baş, çak, qenc, pak – Ava ku ji poz û bêvilê diherike. 9- Aramî, rehetî, bêhnfirehî – Çêbû, hat dinyayê – Gotinek xweşbûn û bêhnfirehbûnê. 10- Gotinek ecêbmayînê – Tazî, bê kinc, bê cil û berg, . 11- Ji malbatî, zayendî. 12- Bi Tirkî "dest". 13- Navekî mêran, ardil. 14- Qebûlnekirin, nexêr. 15- Dayik, yad, mak. 16- Gilî, gazind, serzenîş.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | | | | | | ■ | |
| 2 | | | | | | ■ | | | | | | ■ | | | | |
| 3 | | ■ | | | | | ■ | | | ■ | | | | ■ | | |
| 4 | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | ■ | |
| 5 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 6 | | | | | | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | |
| 8 | | ■ | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | |
| 9 | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | | | |
| 10 | | ■ | | | | | | | ■ | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 138

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | B | A | R | Û | T | E | ■ | A | Ş | X | A | N | E | ■ | Î | Ş |
| 2 | E | R | E | B | ■ | X | A | L | Î | ■ | R | A | Z | E | M | ■ |
| 3 | R | A | G | ■ | Ş | O | R | ■ | A | S | A | B | Î | Y | E | T |
| 4 | D | M | E | H | Ê | B | ■ | A | R | E | S | ■ | Z | O | R | Î |
| 5 | Û | D | V | A | N | ■ | O | X | ■ | R | | | | | | |
| 6 | Ş | Î | ■ | S | K | A | F | ■ | Î | D | | | | | | |
| 7 | ■ | K | E | R | I | K | ■ | Ê | D | Î | | | | | | |
| 8 | A | R | S | E | R | ■ | E | V | A | L | | | | | | |
| 9 | D | A | H | F | I | K | ■ | A | Z | A | | | | | | |
| 10 | Î | N | Î | ■ | N | A | V | R | A | N | | | | | | |

Amedekirina rûpela zarokan:
Sevda Şafik



# NEWROZ

Hebû tunebû, li welatê Kurdan padişahek hebû. Navê wî Dehaq bû. Rojekê Dehaq nexweş dikeve. Li ser her milekî wî marek derdikeve. Dehaq pirr ditirse, gazî hemû doktor û pizîşkan dike. Ji her alî doktor tên ser Dehaq. Doktor li mar û kulên Dehaq mêze dikin, lê nizanin ev çi mar in û çi derman pêwîst e. Roj bi roj êşa Dehaq girantir dibe û Dehaq hemû doktoran gazî qesra xwe dike û ji wan re dibêje: "Yan hûn ê dermanekî peyda bikin, yan jî ez ê serê we jê bikim." Doktor gellekî ditirsin. Yek ji wan dibêje: "Padişahê min, divê tu herroj du zarokan bikujî û mêjiyê wan bidî van maran, wekî din mar wê serê te bixwin." Dehaq yekser bangî leşkerên xwe dike û ji wan re dibêje: "Herin ji min re mêjiyê zarokan bînin."
Leşker dadikevin gund û bajaran, zarokan digirin û dixin zîndanan û her roj du zarokan dikujin. Doktor jî mejiyê zarokan didin maran.
Li welatê Kurdan zarok kêm dibin. Dehaq her roj leşkerên xwe dişîne gund û bajaran, deşt û çiyan û doktor jî her roj mêjiyê zarokan didin maran. Ji her malê zarok tên kuştin, welat seranser dikeve nava şînê.
Wezîrekî Dehaq û hinek leşker êdî zarokan nakujin, li cihê zarokan ew pez û dewaran serjê dikin û mejiyê wan ji Dehaq re tînin. Xelk êdî zarokên xwe dibin li çiyayên asê vedişêrin, çiya êdî dibin stara zarokan. Wê demê li welatê Kurdan hesinkarek hebûye, bi navê Kawa. Heft zarokên Kawayê hesinkar hebûn, Dehaq şeş zarokên Kawa kuştine, lawekî Kawa tenê sax maye. Kawa ji xelkê re dibêje "divê em zarokên xwe rizgar bikin, divê em Dehak bikujin." Kawa ji sibê heya nîvên şevê dıxebite, ew ji gundi û cotkaran re şûr û mertal û riman çêdike. Rojekê dîsa leşker tên mala Kawa û dibêjin: "Kawa, divê em îro lawê teyê dawî jî bibin." Kawa ji leşkeran re dibêje: "Hûn herin, ez ê lawê xwe bînim û ez ê îşev bi destê xwe ji Dehaqê padîşah re bikim qurban." Dema leşker diçin, Kawa xelkê tevger dike û dibêje: "Xwe amade bikin, şûr û mertalan, tîr û kevanan hildin, ez ê îşev Dehaq bikujim." Kawa ji jinan re jî dibêje: "Dema min Dehaq kuşt, ez ê li ser banê qesrê agir dadim, hûn jî li her derê bajar agir dadin".
Kawa pîremêrekî dişîne ser çiyan û jê re dibêje: "Here û ji zarokan re bêje, dema agir pêket, bila ew bê tirs dakevin nava bajar. Êvarê Kawa radihêje çakûçê xwe û tevlî lawê xwe diçe qesra Dehaq. Xelk jî li der û dora bajar xwe ji bo şer amade dikin. Kawa û lawikê xwe dikevin qesra Dehaq, Dehaq dibêje: "Aferîn Kawa, de serê kurê xwe jêke." Kawa jî dibeje: "Ser seran, ser çavan padişahê min." Lê Kawa çakûçê xwe radike û li serê Dehaq dixe û Dehaq dikuje. Gava leşker dibihîzin ku Kawa Dehaq kuştiye, hin ji wan direvin û hin jî xwe teslîmê Kawa û xelkê bajêr dikin. Jin jî li her derê bajêr agir dadidin û li dora agir govendê digirin. Zarok jî ji çiyan dadikevin bajêr û şahiya kuştina Dehaq li hemû welat belav dibe. Ev roja kuştina Dehaq roja 21ê Adarê bû, di vê rojê de zarokên Kurdan, welatê Kurdan ji zordestiya Dehaqê zalim rizgar dibin. Ji wê demê ve 21ê Adarê ji bo Kurdan dibe rojekî nû, rojekî cejnê, navê vê rojê jî dibe nûroj, an jî NEWROZ. Ji bo bîranîna rizgarbûna ji zilma Dehaq, her salê Kurd di 21ê Adarê de agir dadidin, govend û dîlanê digirin û Newrozê pîroz dikin. Newroz pîroz be.




